7

"نابێ جیهان لە کوردان بێ هەواڵ بێت"

## ئێستا کێبڕکێ لەنێوان یەکگرتوو و گۆڕاندایە

6



حکومەت دەڵێ دایکوباوکی لێیان داوە

## منداڵێکی کوردی تەمەن یەک ساڵ دەدرێتە خێزانێکی ئەڵمانی


# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora


5

Daxwaza vekirina gorên komî

## IHD: Li Bakurê Kurdistanê herî kêm 24 gorên komî hene


Deutschland 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

Hejmar / Nr. 82 | 10 Sibat / Februar 2011


**Sînema**

### Piştî 'Min Dît', 'Kick Off Kirkuk'

'Kick Off Kirkuk' heta niha çendîn xelatên navnetewî standine û ji 10'ê Sibatê ve di sînemayên Almanyayê de ye ▶8

**Spor**

### Navê wan li sere wan bûye bela

FC Kurdistan dikare di lîgên jortir de bilîze, lê ji ber tunebûna sponsoran ew mecbûr in bi serkeftinên biçûktir razî bin ▶13

**Sûriye**

### Rojavayê Kurdistanê û Sûriye bêdeng in

Kurd naxwazin çalakî ji wan dest pê bikin û bangên rêxistinên Ereban jî tenê bang dimînin ▶6

**Almanya**

### Nexweşên Kurd berê xwe didin Almanyayê

Şîrketek almanî nexweşên Kurd û Ereb tîne Almanyayê, Kurdekî Zaxoyê jî bi xwarina pereyan tê tewanbarkirin ▶10

# SERXWEBÛN

# Eger ne îro, kengî?

Kosovo, Başûrê Sûdan, Kurdistan? Gelên bindest serxwebûna xwe radigihînin û Kurd hest dikin ku dîsa firsetek dîrokî ji dest didin. Nexasim di demekê de ku cîhana Erebî diheje.

2/3 »








Great Britain





www.rudaw.net
info@rudaw.eu



# *Kerkûk li Bexda û Kurdistanê*

**Ako Mihemed**

Di sê salên borî de, min sê caran Îsmaîl Beşikçî li Enqere dît. Her sê caran berî her tiştî derbarê rewş û paşeroja Kerkûkê û hejmara Kurdên Başûrê Kurdistanê û serxwebûna Kurdistanê de, pirsiyar ji min dikirin. Lê ji vê yekê xerabtir jî ew e ku ev herdu pirs di karnameya opozîsyon û desthilata Başûrê Kurdistanê de ne cihê giringiyê ne, mînak jî daxuyaniya siyasî ya Tevgera Goran û bersiva polîtburoya YNK û PDK'ê bû. Bi taybetî jî daxuyaniya Tevgera Goran ku wek bernameyeke vê tevgera siyasî bû "Ji bo rizgarkirina Kurdistanê ji vê teqinandina niha" wek ku di daxuyaniyê de hatiye û wek ku mabûna Kerkûkê û ji sedî 43'yê xaka Başûrê Kurdistanê bi awayekî veqetandî ji sînor û desthilata Hikûmeta Herêma Kurdistanê ne zîrveya kirîz û asêbûna siyaseta Kurdî li vî parçeyê Kurdistanê be.

Tevahiya rexneyan li Tevgera Goran li ser wê yekê bûn ku çawa daxwaza hilweşandina parlamento û Hikûmeta Herêma Kurdistanê kiriye. Lê bi rastî şaşmabûn û rexneyên min li ser wê yekê bûn ku çawa tevgereke siyasî ya wisa ku xwe wek alternatîvekî baştir û welatperwertir ji PDK û YNK'ê pêşkêş dike, di vê daxuyaniyê de - ku kurtiya tevahiya dîtina vê tevgerê ye ji bo reformkirina rewş û siyaseta Kurdî - ji sedî 43'yê xaka Başûrê Kurdistanê, ne ku tenê ne li pêşiya 7 xalên Goran de bû, lê bi carekê nebû.

Vê yekê li aliyekî deyne ku ew hemû kampanyên ku Goran li Silêmaniyê organîze kiribûn an piştgiriya wan kiribû, ti yek ji wan ne ji bo wê yekê bûn ku zext li desthilat û serkirdayetiya Kurd bên kirin ku êdî bes e û nabe navçeyên veqetandî her wekî xwe bimînin. Îro bi saya polîtîkaya desthilat û opozîsyonê (helbet bêtir a desthilatê) ji dêlva yekalîkirina çarenivîsa navçeyên veqetandî, bi qeflan Kurd ji Mûsilê û Celewla tên derxistin, Bexda û Erebistana Siudî û Îran pereyan diherikînin Kerkûkê, bi mebesta kirîna xanî û zeviyên Kurdan. Ji wî alî jî gefên Ereban bi navê Rêxistina Qaîde û kevnebaasiyan Kurdan ditirsînin da ku di demeke zûtir de zevî û xaniyên xwe bifiroşin! Kanî zext û bernameya opozîsyonê û plana desthilatê?

Ji nîveka salên 1960'an ve Kerkûk navend û bingeha doza Kurd li Başûrê Kurdistanê ye. Serokê şoreşa Kurdistanê Mistefa Barzanî ku pêdagirî li ser Kurdistanîbûna Kerkûkê dikir - eger Kurdekî tenê jî tê de nemîne - wî Barzanî herwiha hemû ew daxwazî jî red dikirin ku dixwestin Kerkûk bi Îraqê re bê parvekirin yan doza wê piştguh bixe. Jê wêdetir jî, wisa diyar e ji ber zêdebûna daxwazên ku jê dihatin kirin, neçar bû bêje 'ne amade me gora min bikeve ber tif û laneta wê yekê ku min dest ji Kerkûkê berda.' Mixabin piştî 2003'an di du aliyan de berevajiya vê siyasetê ji aliyê serkirdayetiya siyasî ya Kurd hat meşandin:

Yekem: Pirsgirêka Kerkûk û navçeyên veqetandî xist ber şertê referendûmê û nekir pirsgirêka cografya, lê ya demografya. Ji dêlva ku pêdagirî li ser wê yekê bê kirin ku Kerkûk û cihên din di aliyê cografîk de ser bi Kurdistanê bin, pêdagirî li ser nehiştina Ereben proseya Erebkirinê li van navçeyan hat kirin, ku hevwelatiyên resen û ne resen tiştekî cihê sivikatîpêkirinê ye bi dîroka Amerîka ya ku wê demê li Îraqê desthilatdar bû û Amerîkî naxwazin jê fam bikin. Ji bilî vêya jî çareserkirina pirsgirêka Ereben resen û ne resen jî li van navçeyan bi diyarkirina vî sînorî (ku wê demê Kurd aliyê herî bihêz û organîzekirî li Îraqê bûn) pêk dihat, lê pirsgirêk bû pirsgirêka demografya û demdirêj. Encama wê jî ew e ku bilindtirîn berpirsa Kurd di Komîteya Bilind a Cîbicîkirina Madeya 140'ê de di vê hejmara Rûdawê de dibêje ku maddeya 140'ê çar salên din jî nayê cîbicîkirin. Yanî hîç.

> **Serkirdayetiya siyasî ya Kurd derfetên herî baş ji bo vegerandina vê xakê ji dest dan. Niha jî ji sibe baştir e ji bo karkirin û siyasetkirineke ciddî ji bo vegerandina wê.**

Duyem: Tiştê ku di serdemê Barzaniyê gorbuhişt de nedihat qebûlkirin, êdî di nav hinek siyasetvan û nivîskarên Kurd de tê ser zar û kazezan: "Bila vê carê jî em destkeftên xwe nekin qurbana Kerkûkê". Bê ku haya wan jê hebe ku ev tê wateya vegera bo xala zero û jidestdana destkeftên niha jî.

Ji ber vê yekê jî, bi rastî bi wê daxuyaniya Goran qeyrana siyaseta Kurdî pê çareser nabe, ji ber xala wê ya herî serekî tê de nine. Bi ser de jî hemû xalên wê ji aliyê hinek endam û parlamenterên Goran bi xwe jî ne cihê razîbûnê ne. Goran ku ewqasî dijayetiya hizbî dike, wiha dike ku xwe ji PDK û YNK'ê tundtir bike, dema rê li ber ra û nerînên cuda yên parlamenter û rêveberên xwe di vî warî de digre û di heman demê de di reftarkirina bi bûyeran re çav li medyaya PDK û YNK'ê dike. Wek mînak, medyaya PDK û YNK'ê dibêjin: Xelkê Silêmaniyê nerazîbûna xwe himber daxuyaniya Goran pêşan dan û gotinên sê-çar kesan belav dikin! Medyaya Goran jî dibêje: Xelkê Silêmaniyê piştîvaniya xwe himber daxuyaniya Goran pêşan dan û gotinên sê-çar kesan belav dike!

Ev ji bilî wê yekê ku mijûlkirina xelkê bi van hemû pirsgirêk û nerazîbûnên bê çareserî, xelkê bêzar dike. Bi ser de jî ev çend sal in PDK û YNK bi partiyan re îspat dikin ku gendelî û filan û bêvan kêmasî hene, divê êdî xelk bernameya wan ji bo çareserkirina van kêmasiyan bibîne, lê ne ku li van xeletiyan mikur bên û li ser wan berdewam jî bin.

Îro li Başûrê Kurdistanê ji sedî 43'ê xaka Kurdan ne ser bi Herêma Kurdistanê ye. Ji ber vê yekê jî desthilata bê welat (xak) peyveke bê wate ye. Ji vê bê watetir jî, jibîrkirin û bê bernamebûna ji bo vê xakê ye. Serkirdayetiya siyasî ya Kurd derfetên herî baş ji bo vegerandina vê xakê ji dest dan. Niha jî ji sibe baştire ji bo karkirin û siyasetkirineke ciddî ji bo vegerandina wê, ji bo ku serokayetî, partî û nifşê niha şermezarê nifşê li pey xwe nebe, pêwîste êdî hizra vê xalê bikin, ji ber ku nêzîke dem diqede.

Min di dema wê de vekişîna Goran ji Îtîlafa Fraksyonên Kurdistanî wek karekî xerab nedît, ji ber ku heye bibe sedemê derketina rikberiyê di navbera Fraksyona Goran û Hevpeymaniya Kurdistanî de ji bo çavdêrîkirina ne amadebûn û xemsariya hevdu û karkirina zêdetir ji bo pirsên nazik û hestiyar ên gelê Kurd - ku bê guman berî hemuyan di pirsa bi berdewamî anîna pêş a dosya cîbicîkirina madeya 140'ê de rikberiyê bikin. Lê mixabin li wir jî heta niha rikberî tenê li ser desthilat û postan e.

## Konsûlê Rûsyayê li Kurdistanê, Waqîf Garayev:
# Dewletek Kurdî bê damezirandin em ê piştgiriyê bidinê

**Hêmin Baban Rehîm**
**Hewar Ebdûlrezaq**

Konsûlê giştî yê Rûsyayê li Herêma Kurdistanê Waqîf Garayev ji ber temambûna erkê wî yê li Herêma Kurdistanê, wê di çend rojên pêşiya me de vegere Rûsyaye û ji Rûdawê re hestên xwe wiha anîn ziman: "Rast e, ez kefxweş im ku diçim welatê xwe û nava malbata xwe, lê gelek dilteng im, ji ber ku Herêma Kurdistanê li paş xwe dihêlim." Piştî 3 sal û 7 mehên wî li Herêma Kurdistanê, ew Kurdistanê bi "Biheştek ciwan" binav dike.



Wêne: Rûdaw

### Divê Îraq çavê xwe bide demokrasiya Kurdistanê

Garayev di dema 3'ê salên xwe de li Herêma Kurdistanê ji rewşa Kurdistanê ya siyasî agahdar bûye û bi baweriya wî "Ji bo Kurdan gelek giring bû ku karîbûn bibin kilîta çareseriya pirsgirêka pêkanîna hikûmeta nû ya li Îraqê ku çend mehan dereng ket."

Garayev derbarê mafê çarenivîsa ji bo gelê Kurdistanê ya ku Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî di kongeya 13. a PDK'ê de xistî ber çavan de, dibêje: "Hemû gel xwediyê wî mafî ne, lê Herêma Kurdistanê hêj bi Îraqê ve ye. Bi taybetî ji ber ku beşek pir giringe û ew demokrasiya li Herêma Kurdistanê heye, divê parêzgehên din ên Îraqê çavê xwe bidinê." Konsûlê navbirî derbarê piştgiriya welatê xwe ya ji bo damezirandina dewletek Kurdî dibêje: "Helwesta me ew e ku dewleta Kurdî meseleyek navxweyî ye û cûdabûna Kurdistanê pirsek navxweyî ya Îraqê ye. Girige ku bijarde li gor rêya destûr û rêyek demokrasî be û eger bi vî awayî be em ê piştgiriyê bidinê."

### Demokrasiya Kurdistanê bê opozîsyon pêş nakeve

Konsûlê giştî yê Rûsya di wê baweriyê de ye ku Herêma Kurdistanê û proseya wê ya siyasî "di despêka demokrasiyê de ye" û hebûna opozîsyonê li Herêma Kurdistanê ji bo proseya siyasî "pir giring" dibîne û bal dikişîne ser wê yekê ku pêwîste "opozîsyon li ser meseleyên heyî û pirsgirêkên çêdibin, li gel desthilatdariyê arîkar bin. Bêyî opozîsyonê ti guhertin dirûst nabin û pêş nakevin. Di civakên demokrat de giringe rêz ji dîtinên opozîsyonê re bên girtin."

### Rûsya, Barzanî vedixwîne

Konsûlê Rûsya Garayev derbarê serdana Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ji bo Rûsyayê û vexwendina wî ji aliyê Rûsye ve dibêje: "Ew serdan di rojevê de ye û wê sedî 100 pêk were." Li gel vê yekê jî bal dikişîne ser wê yekê ku "Hêj demê serdanê ne diyare, lê wê di demek gûncaw de çêbe."

**Rûdaw**
Rojnameyeke siyasî û heftane

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Serokê Civata Rêvebir**
Nûredîn Weysî
nuradinwaisi@rudaw.net

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Fîrat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemmed Orhan
kaniyajiyane@hotmail.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçi

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

# Serxwebûn: Îro ne sibe

▶Eger em li benda wê yekê bin ku rojekê rewşa herêmê bê gûhertin û em bikarin bê serêşan serxwebûna xwe ragihênin, ew roj qet nayê

▶Agirê şoreş û raperîna niha ku li welatên Ereb belav bûye, di berjewendiyên Kurdan de ye

**Eyûb Nûrî**

Agirê şoreş û raperîna ku niha li cîhana welatên Ereb belav bûye, agireke di berjewendiya Kurdan de ye. Herdem ev dewlet li dijî daxwazên Kurdan bûn û li beramberî bextreşiyên me bêdeng bûn. Lê tiştekî xweş e ku niha yek bi yek dihelin û ji nav diçin. Kurdistan ne tenê bi ti awayî ne weke wan e, lê ji hezar aliyan ve pêwîstî guhertinê ye. Tiştê ku niha li Misir û Yemen jî rû dide, nabe li Kurdistanê çav lê neyê kirin, lê pêwîste bê zanîn ku Kurd çend salan li pêşiya welatên Erebab e û ti carî jî ligel wan nayê berhev kirin.

Qet pêwîst nake ji bo bidesxistina daxwazên ferdî û neteweya me, yan ji bo rûbirûbûna desthilat û rexnegirtina wê yekê, em çavê xwe bidin welatên Ereb. Li cîhanê ji bo gûherîn, demokrasî, vebûn û daxwazan gelek ezmûnên serkeftî hene. Daxwazên wan û yên me ji hev cûdane. Derdê wan û yê me ji hev cûda ye. Dermanê wan kêrî nexweşiyên me nayê. Rast e piraniya gelê Misrê ji serokê xwe bêzar in, lê hin kes jî hene ku ne ji bo guhertina jiyana xwe û zarokên xwe hatine ser cadeyan, lê tenê ji kerbên Cihûyan de qêr dike û serî hildide. Dixwaze bêje 'Ey Îsraîl, ez ê ji kerbên te hikûmeta xwe hilweşînim.'

Hêvî û daxwazên gelê Misir û Yemenê li gor daxwazên gelê Kurd biçûk in. Erebên Misir û Yemenê serbixwe ne. Welatê wan heye, ala wan heye, endamê Neteweyên Yekbûyî ne û li paytextên cîhanê konsûlxaneyên wan hene. Sînorê wan diyar kiriye û kes nikare çavê xwe berde metreyek xaka wan. Daxwaza wan a niha ji bo rakirina serok, erzankirina nirxê nan û dîtina kar, hinek daxwazin ku di bingeh, nezanîn û paşketina wan de bûn û heta niha ji wan re nehatine dayîn. Eger gelê Misrê piştî çend salan hatina Mûbarek a ser deshilatiyê, ev daxwaz ji Mûbarek kiriban; wê niha di gelek aliyan de milê xwe dabûne milên welatên demokrat û pêşketî. Şaş e ku em çavê xwe bidin gelekî ku 30 sal e rûniştiye û diktatorekî diparêze.

**Pir-pir pêwîst e ku Kurd vî şansê zêrîn bibînin û xwe ji bo pêngava dîrokî ya herî mezin amade bikin**

Di vê navberê de Kurd pêwîst e, pir-pir pêwîst e, vî şansê zêrîn bibînin û xwe ji bo pêngava dîrokî ya herî mezin amade bikin. Niha dema wê yekê ye, li cihê em bên ser cadeyan û daxwaza zêdebûna elektrîk, avakirina pir, çareserkirina gendelî, wergirtina zevî, xerckirina dermale û sûlfeya zewacê bikin, em bi yek dengî ji bo serxwebûna Kurdistanê bikin qêrîn. Eger Ereb ne serbixwe bûna, qet nedihatin ser cadeyan û daxwaza erzaniyê nedikirin, lê di pêşiyê de wan ê xema çarenûsa xwe hilgirta.

Niha li tevaya cîhanê, ji Koşka Spî bigire heta London, Berlîn û Parîs, piştgiriya gelê Misrê tê kirin. Bi nêrîna wan daxwaza wî gelî rewa ye û ev yek şansek zêrîn e ji bo ku Kurd daxwaza serxwebûna xwe bikin. Di rastî de ne girîng e Washington û London piştgiriyê didin, an na. Ya girîng ew e ku gelê Kurdistanê û partî xwediyê heman bernameyê bin û bizanin daxwaza çi dikin.



Ez pêşniyara wê yekê nakim ku daxwaza serxwebûnê ji kesî bikin, wekî ku em hîn bûne û hertim dibêjin ku Amerîka dikare bi tikandina mişkekî wî mafî bide me. Serxwebûna me ne di destê kesekî de ye û kes jî nade me. Belkî divê em bi dest bînin. Wekî gelê Tîmora Rojhilat ku ji dîktatorê Îndoneziya sil nekirine û serxwebûna xwe ragihandin. Wekî Kosova û Başûrê Sûdan. Wekî Taywan ku di bin destê deshilatdariyek wek Çînê de ye û natirsin. Dema wan serxwebûna xwe ragihandin, çend welatan piştgiriya wan dikirin û du qatî wan jî li dijî wan bûn. Lê li ser daxwazên xwe berdewam bûn, ala serxwebûnê bilind kirin; neyarên wan jî her çend salan bi wê êşê ve man û gef li wan dixwarin.

Eger em li benda wê yekê bin ku rojekê wê rewşa navçeyê bê gûhertin û emê bikarin bê serêşan serxwebûna xwe ragihînin, ew roj qet nayê. Eger 3 hezar salên din jî Kurd serxwebûna xwe ragihînin, wê her wekî niha Ereb, Tirk û Faris nerazîbûna xwe nîşan bidin. Nahêlin ew xewna ku bi hezaran Kurd ji ber hatin kûştin, girtin û îşkencekirin, bê cih. Dev ji wê yekê berde, gelo çi pêwendiya serxwebûna min bi cîranê min ve heye? Dema Ataturk biryar da ku Komara Tirkiyê saz bike, qet hesabê hêzên mezinên dinyayê nekir, yên ku cîhan parçe parçe dikirin. Bi tena serê xwe û hinek leşkerên li pey artêşa Osmaniyan mayî, li gel Yûnanistan, Brîtanya, Rûsya, Ermenistan û Kurdan di şerê welatekî ji bo Tirkan de bûn. Dema Îsraîl dewleta Cihûyan damezirandî, çi tirsa wê ji nerazîbûna aliyekî din ê cîhanê hebû. Di sala yekem a serxwebûna xwe de ji aliyê 5 welatên Ereb ên deshilatdar û têr çek ve êriş bir ser, Îsraîl her pênc welat şikandin û protesto kir, tevî ku hemû Cihûyên ku şer dikirin ew bûn ên ku bi pêxasî, tazî û birçî ji kampên Almanya û Polonya reviyabûn Îsrailê. Lê ji ber ku dizanîn çi dixwestin û serxwebûn li gel wan ji hemû tiştê girîngtir bû, serketin. Li dinyayê ti welatekî ji ber xatirê miletekî din daxwaza serxwebûnê nekiriye û dest ji wî mafî xwe bernedane.

**Tenê ji bo ku Tirkiye ji me aciz nebe, em newêrin behsa serxwebûnê bikin**

Tenê em Kurd me li gel xwe û di nava psîkolojiya xwe de Ereb û Tirk kirine şirîk: Eger em behsa serxwebûnê bikin, wê wekî ejderhayekê bên û me bixwin. Tenê ji bo ku Tirkiye ji me aciz nebe, em newêrin behsa serxwebûnê bikin. Me xwe bi xwe tirsandiye û em wisa dizanin ku Kurdistanek serbixwe nikare sê rojan li ber xwe bide.

Ev hemû tirs jî me bi xwe çêkirine û ji hemû tirsên din xirabtir in. Erê em ji Başûrê Sûdanê lawaztir in? Ji Kosova, Tîmorî Rojhilat û Somal paşketîtir in? Nexêr. Dest ji wan jî berde, em ji gelek welatên din jî pêşketîtir in. Niha pêwîstiya Tirkiye û Îranê bi me heye. Niha ew in, ên ku hatine û li meydana aboriya Kurdistanê de milê hev dişkênin. Niha aboriya cîhanê wisa lê hatiye, eger şîrketek bikare li her cihekî vê cîhanê ji xwe re bazarekê bibîne, wê ewqas memnûn bibe. Îro eger serokek bikare ji bo hevwelatiyekî kar bibîne, xwe weke pelewan dibîne. Ka bizanin çend hezar Tirk, Faris û Ereb li Kurdistanê di hewla komkirina pereyan de ne. Îro deshilatdarên doh in ku destê biçûkan maç dikin. Heya ku Amerîka, Brîtanya, Fransa û Rûsya yek bi yek serokên xwe rêkirin Hindistanê û daxwaza bazar, îş û kar jê dikin. Destê Hindistan maç dikin ku tiştan jê bikirin. Kurdistana îro wekî Hindistana biçûk e. Tirkiye, Îran û cîran dane bi dane tên û li pey bazarê digerin.

**Ew şansê niha ji bo Kurdan derketî, di ti qonaxên dîrokê de derneketiye**

Ew şansê niha ji bo Kurdan derketî, di ti qonaxên dîrokê de derneketiye. Berê Kurd diçûn Basra, Romadî, Tehran û Stenbol li kar digeriyan. Lê niha ji wan bajaran, ji Afrîka, Amerîka Latîn û Çînê tên Kurdistanê û nan peyda dikin. Niha Kurd dikarin sinorê xwe li wan bigirin, nanê wan bibirin û şîrketên wan ji kar derxin. Îro hevkêşe berevajîne û dahatû ji bo gelên din e, Kurd jî yek ji wan e. Lê bêyî serxwebûnê, eger tu sed ewqas dewlemend bî, pereyê te hebe û asayîşa te hebe, lê sûd û garantiya te ya wê yekê nîne ku tu sibe jî her wisa bimînî.

Pêwîst e di zûtirîn dem de serokên Kurd, Parlamentoya Kurdistanê, Civata Wezîran û hemû partî bicivin, hemû kar û bernameya xwe bêxin xizmeta serxwebûnê. Niha û sed salên din jî, ligel bê karî û ti projeyek din ji vê yekê girîngtir nîne. Her partî, serok, her siyasetvanê bixwaze navê xwe di dîrokê de binivîse û xizmeta herî mezin pêşkêşî Kurdistanê bike, wê ji niha de hewla serxwebûna Kurdistanê bide, ji bo ku êdî ne ew û ne ti Kurdekî din ê cîhanê weke Îraqî neyê binavkirin, pasaporta Îraqê hilnegire û dema yekî dibîne pêwîstî bi wê yekê nebe ku saetekê behsa wê yekê bikî ka Kurd çi ne û Ereb çi ne.

Ev şansê niha ji bo me derketî, dibe ku carek din dubare nebe. Ji hemû tiştê ya herî giring ew e ku dewleta Îraqê lawaz e. Artêşa wê nû û bê ezmûn e. Leşkerên wê tenê ji bo pereyan bûne leşker, ne di warê şer de şarezane û ne jî amade ne xwe bidin kuştin. Artêşa Îraqê wekî parlamentoya wê bi ser Şî'e û Sunniyan de parve bûye, ew jî hezar û çarsed sale kîna wan li himberî hev heye. Ev hemû nîşan in, peyam in ji bo Kurdan û heya ji wan têbigihin û lezûbez wî şansî bikarbînin. Eger Îraq hate ser xwe û artêşeke bi hêz ava kir, heman ew tank û helîkopterên ku niha ji Amerîkayê dikire, wê sibe bîne Hewlêr û Silêmaniyê.

**Eger Îraq hate ser xwe û artêşeke bi hêz ava kir, heman ew tank û helîkopterên ku niha ji Amerîkayê dikire, wê sibe bîne Hewlêr û Silêmaniyê**

Niha Kurd dikarin bêjin ez naxwazim ligel Îraqa tevlîhev û bê demokrastî jiyan bikim û kes jî red nake. Lê eger sibe Îraq aram bû, wê demê behsa herî biçûk a ji bo serxwebûnê wê bi tevlîhevî û terorê bê binavkirin. Wê me bombebaran bikin, bikûjin û kes jî li ser me bersivê nade.

Îro agirê Tunisê ji mêj ve ye li Îranê di bin xweliyê de dişewite. Diktatorê Sûriyê jî li beramberî heman lehiyê ye. Dereng an zû, wê ew jî bê xeniqandin. Ji vî şansî û îro baştir nakeve destê te, pêwîst e û pir-pir pêwîst e serokên Kurd danezana serxwebûnê bidin, heya kar ji bo Kurdên Sûriyê û Îranê jî hêsan bibe.

## Pêşniyara Erdogan a ‘Bila walî bên hibijartin’ tê nîqaşkirin

# Gelo wê hilbijartina waliyan rêya çareseriyê veke?

**Firat Baran** Enqere

Serokwezîrê Tirkiyê Recep Tayyip Erdogan, heftiya borî dema ji Kazakistanê vedigeriya di balafirê de bi rojnamevanan re axivî û amaje da sîstema serokatiya dewletê wek mînak YDA (Yekitiya Dewletên Amerîkayê) nîşan da û xwast li Tirkiyê walî jî bi rêya hilbijartinan dest bi kar bikin. Erdogan herwiha dixwaze ku rayagiştî jî mijara hilbijartina waliyan guftûgo bike. BDP pêşniyara Edogan “kêm” dibîne, lê bi erênî nêzîk dibe. Pispor jî di wê baweriyê de ne ku ev rêbaza siyasî wê destê rêvebiriyên herêmî xurt bike û rêya çareseriya pirsgirêka Kurd vebike.

### Ekmen: Eger rayagiştî piştgirî bide wê bikeve pratîkê

Parlamenterê AKP’ê yê Êlîhê Mehmet Emin Ekmen, nîqaşkirina her gavên ku li Tirkiyê destê rêvebiriyên herêmî xurt bikin, pêwîst dibîne “Be gûman, gaveke gelek girînge ku gel karibe waliyan hilbijêre. Ez vê gavê erênî dibînim û piştgiriyê didimê.” Ekmen bal kişand ser wê yekê ku Erdogan vê pêşniyara xwe hem ji bo sîstema serokatiya dewletê û hem jî ji bo makezagona nû aniye ziman, “Armanca Erdogan ew e ku ev mijar di rayagiştî de bê nîqaşkirin.” Lê Ekmen bawer nake ku dema projeya hilbjrtina waliyan hatibe: “Em wek Hîkûmeta AKP’ê hê neketine nav amadekariyên wiha, lê eger ev mijar di rayagiştî de têr bê nîqaşkirin û piştgirî hebe, wê rêya gaveke demokratîk vebe û em wek hikumet çi bikeve ser milê me, em ê bikin.”

Endamê BDP’ê û Cîgirê Serokê Komîteya Hilbijartinên Herêmî Demir Çelik, bibîrxist ku di projeya BDP’ê ya Xweseriya Demokratîk de jî hilbijartina waliyan heye “Girîng e walî jî wek serokên şaredaran ji aliyê gel vê bên hilbijartin, herwiha qaymeqam jî divê bên hilbijartin, ne ku jî aliyê Enqerê vê bên şandin.” Çelik pêşniyara hilbijartina waliyan tiştek erênî, lê kêm dibîne: “Gaveke di cîh de ye, lê têr nake; divê mekanîzmaya demokratîk baş bê bikaranîn. Ligel hilbijartina walî û qaymeqaman, divê meclîsên gundan, bajaran, yê jinan û ciwanan jî bên damezirandin û gel karibe rasterast tevlî rêvebiriyê bibe. Di şûna sîstema niha ya girtî û atî-demokratîk de.”

**Gaveke di cîh de ye, lê têr nake; divê mekanîzmaya demokratîk baş bê bikaranîn.**


Demir Çelik

**Ev proje wê birêvebirina herêmî xurt bibe û rêya çareserkirina pirsgirêka Kurd veke.**


Prof. Dr. Ahmet Ozer

**Armanca Recep Teyyip Erdogan ew e ku ev mijar di rayagiştî de bê nîqaşkirin.**


Parl. AKP’ê Mehmet Emin Ekmen

### Prof. Dr. Ozer: Divê Kurd piştgirî bidin

Mamostayê Zanîngeha Suleyman Demirel, Prof. Dr. Ahmet Ozer destnîşan kir ku sîstema serokatiyê ku niha Erdogan dixwaze pêkbîne, rê dide ku gel tevlî rêvebiriyê bibe. Ozer da zanîn li welatên ku sîstema serokatiyê an jî nîv-serokatiyê desthilatdar e, herwiha sîstema eyaletan jî heye, “Eger Tirkiye sîsitema serokatiya dewletê bipejirîne eyalet nebin jî wê wilayet bi xwe waliyên xwe hilbijêrin. Eger serokatiya dewletê baş rûnê wê gavê wê dadwer jî ji aliyê gel vê bên hilbijartin. Ligel walî wê meclîseke herêmî jî hebe. Hemû herêm, bajar û eyaletên xweser wê derbarê çareserkirina pirsgirêkên xwe de xwediyê biryarê bin. Meclîsên Herêmê ji bilî ewlekariyê, dadê û karên derve wê di karên wek perwerde, tenidirustî û aborî de xwediyê biryar bin.” Ozer da zanîn ku Tirkiye dikare projeya hilbijartina waliyan pêkbîne û got li cîhanê gelek mînakên wiha hene. Ozer di dawiyê de jî xwest ku Kurd piştgirî bidin vê projeyê: “Jiber ku piştî pêkanîna vê projeyê wê birêvebirina herêmî xurt bibe, ev jî wê rêya çareserkirina pirsgirêka Kurd veke.”

---



# *Hizrîn li gor mentalîteya Erebî (Rewşenbîrên Kurd wek nimûne)*

**Hîlal Îbrahîm**

Ligel hewldanên guherînê li Tunisê, hewldana guherînên siyasî gihişt Misrê. Li Kurdistanê jî ji aliyê hinek kesên sivîl û karbidestên siyasî û rewşenbîrî guherîna siyasî li Tunisê û hewldan li Misrê wek rewşeke sade ya cîhanê tên dîtin, bi ser de jî wek pirsgirêkeke rût a siyasî û rojane dixwînin. Beşeke din jî hewl didin wek metirsiyeke ciddî li ser hebûna siyasî û rol û tecrûbeya Kurdî berê xwe bidinê.

Ev herdu têgihiştin, çi kesên ku dixwazin rewşa siyasî û hebûna Kurd bi rewşa îro ya cîhana Erebî ve girê bidin û çi kesên ku li gor wan eger ew rewş li Kurdistanê çêbibe metirsî ye li ser ezmûna Herêma Kurdistanê, ne rast in. Ev herdu nerîn li ser nerînên siyasî yên rewşê, dabeş bûn. Yanî temaşekirina ku li Herêma Kurdistanê çêbûye, bi herdu nerînan jî, têgihiştineke berjewendîperest a siyasî ya tazî ye. Mixabin rewşenbîr jî bi heman rengî li ser herdu têgihiştinan dabeş bûne. Tiştê em dibînin ew nikarin kûrtir ji têgihiştina serkirdayetiya siyasî ya Kurdî rewşê bixwînin û lê biramin û li ser baxivin. Ji ber vê yekê li vir pêwîst e pir bi lezgînî derbarê aliyê hundir ê vê rewşê de baxivin, bo vêya jî pêwîst e bipirsin ev hewldan ku beşek ji rewşenbîran daxwaza wê dikin, ji ber çi hizrîneke li gor mentalîteya Erebî?

Eger em berê xwe bi hûrbînî bidin vê şepolê, em ê wê hest û hizrînê bibînin ku hewldanên vê qonaxa ramana Erebî bi vegera Ereban bo nav dîrokê ve girêdayî ne, ji ber ev zêdeyî du sedsalane ku Ereb nikarin bi xwe biryarê li ser çarenivîs û jiyana xwe li cîhanê bidin, herwiha nikarin dîroka xwe birêve bibin. Serdemê Împeratoriya Osmanî, sedsala paşdeçûna Ereban li cîhanê bû, ev marjînalbûn berî wê demê destpê kir û heta dawiyên sedsala bîstan û heta niha jî berdewam e. Bi ser de jî, ew şoreşên ku di sedsala bîstan de li cîhana Erebî hatin kirin, çarenivîsa wan binpêkirin û wêrankirina dîroka vê neteweyê bû, ji ber vê yekê Ereban li ber çavê cîhanê hest bi şermeke mezin dikir ku piştî wê dîrok û şaristaniya wan ku hebû, lê hê jî aliyê desthilatdarên welatên wan tên çewisandin û lewra jî beşek ji rewşenbîr û zanayên olî jî vê guherînê wek dergehekê dibînin bo vegera Ereban bo nav dîrokê, bi ser de jî şoreşa Yasemîn a Tunusê dişibînin şoreşa Frensî. Ji ber vê yekê jî ev hewldan xwe di pirsgirêkên rojane wek av, elektrîk û bêkariyê tenê de nabîne, lê armanca wê kûrtir e.

### Azadî wek pirsgirêkeke nedîtî

i vê rewşa ku hatiye pêş de, pirsgirêka yekem azadî ye, lê ev rewş û pirsgirêk bi rizgarbûna ji sîstemeke siyasî dawî li wê qonaxê ku li cîhana Erebî heye, nayê. Cîhana Ereban di hevrikiyeke berdewam de dijî, di navbera sitema rojavayî û xema olî û dinyayî. Beşekî zêde ji xelkê li cîhana Erebî hê ji hundir ve nikarin xwe ji qonaxa hevrikiya navxweyî ku pê re dijîn veqetînin, beşekî hêza vê hevrikiyê di nav şepola moderin de ye û beşekî din jî bi raman û hestên olî ve girêdayî ye, loma jî ev xwestek bi arîşeyên rût ên rojane tenê ve ne girêdayî ye, lê wek min got hewldan e bo vegera Ereban bo nav dîrokê. Ev rewşa vegerê jî di sedsala bîstan de her carê xwe bi awayekî pêşan dide û tête holê. Şoreşa 1958’an li Iraqê, û şerê sala 1967’an di navbera Ereb û Îsraîlê de û hewldanên wan bo rizgarbûna ji mandateriya Brîtanî û Fransî hewldaneke din e bo vegera Ereban bo nav dîrokê. Ev hewldan cihê sipasiyê ne, lê pêwîst nake Kurd wan kopî bike, bide pey wan û şanaziyê bi wan bike. Wek min got, ev hewldan cihê sipasiyê ne, lê ji me re ne cihê serbilindiyê ne.

Mixabin hewldanek li Kurdistanê heye û bi nêt e bide pey mentalîteya Erebî. Ev elît bi raman rojavayî dide pey şopa Ereban. Ev hewldana ku em behs dikin di ra û nerînên beşek ji rewşenbîrên Kurd de bi awayekî eşkere tê dîtin. Hinek rewşenbîrên me hene daxwazkirina hilweşandina hikûmet û parlamentoyê wek guherînên radîkal û bingehînî dibînin, bi baweriya van rewşenbîran eger hikûmet û parlamento bên hilweşandin êdî her rewşeke dîrokî, mirovî û olî di nav Kurdan de li Îraqê diguhere, û li gor wan daxuyaniya Tevgera Goran daxuyaniyeke bo guherîneke bingehînî li Kurdistanê. Ev têgihiştin hem cihê diltengî û hem jî cihê pêkenînê ye. Herwiha bi dîtina hinek rewşenbîrên me Enfal berdewam in û xerabiya av û elektrîkê wek proseyeke qirkirinê ye. Ev têgihiştin jî ji ya berî xwe xerabtire. Ev rewşenbîr ne ku niha, lê ji çend salan ve ye hewl didin ku hemû xewnên mirovê Kurd biçûk bikin bo av, elektrîk û xizmetguzariyên rojane, hemû hest û hişê mirovê Kurd bi hewa û hewesan ve girê bidin. Hemû xeyalên Kurdan, exlaq û ramana Kurdan bi destkeftên demkî ve girê bidin. Ev rewşa ku rewşenbîrên me ketinê di nav çarçoveyeke diyarkirî ya cîhana rojavayî de ketine pey rê û armanca Ereban, bi awayekî ku di paşerojê de dawiya şiyan û hêza mirovê Kurd tê de dibînin. Êdî mirovê Kurd wisa lê tê bi ti tiştê ciddî nafikire, ji bilî destkeftên rojane.

Gelo dema Kurdan serhildan kirin, li cîhanê ji bilî Kurdan, kîjan neteweyeke din şanazî bi van serhildanan kir?

Gelo li Tirkiyê, ku ev du sal in xwepêşandanên berdewam tên kirin bo mafên sivîl ên gelê Kurd, kîjan netewe û dewleta vê dinyayê heye ku guhdariya dengê Kurdan bike?




Wêne: DIHA

# İHD: Nexşerêya gorên komî heye

▶Her aliyê Tirkiyê bûye goristan. Hûn ku derê bikolîn an estî derdikevin, an jî çek.

▶Li 12 herêman bi kêmanî 24 gorên komî hene.

▶Em di sergoyan de li estiyên xizmên xwe digerin.

**Medya Deniz**

Piştî ku li navçeya Bêdlîsê Motkî di goreke komî de estiyên 18 kesan hatin dîtin, mijara "Gorên Komî" careke din kete rojevê. Niha li herêmên Kurdan tê çaverêkirin ku bûyerên ku di salên 90'î de qewimîne û bi salane tarî mane, bên ronîkirin.

Serokê Komeleya Mafê Mirovan (İHD) Ozturk Turkdogan ragihand ku li gor serlêdanên malbatan ku li wan hatine kirine, li Amed, Batman, Bêdlîs, Erzirom, Qers, Ardahan, Dêrsim, Colemerg Mêrdîn, Elezîz, Çêwlik û Sêrtê qet tune be 24 gorên komî hene. Turkdogan da zanîn ku hem di arşîvên wan û hem jî di arşîvên dewletê de derbarê gorên komî de zanyariyên balkêş û çavdêr jî hene, "Lê em nikarin ji rayedarên dewletê destûr bistînin da ku karibin wan cihan bikolin."

Serokê IHD'ê bibîrxist ku heta niha ji goran estiyên 87 kesan hatine derxistin û got, "Lê bi sedan gor hene ku bên kolandin û di nava wan goran de akibeta bi sedan kesan veşartiye."

**Parl. BDP'ê yê Mûşê Sakik: Ji kuştinan dewlet berpirsyar e**

Parl. BDP'ê yê Mûşê Sirri Sakik jî daxuyand ku ji gorên komî û kuştinên kujerên ne diyar ên li Kurdistanê, dewlet berpirsiyar e.

Sakik bal kişand ser wê yekê ku eger li vî welatî kujer û yên ku bûyeran dişopînin hevkariyê bikin, wê ti carî kujer neyên dîtin û wiha dom kir: "Dewletê ev bûyer pêkanî. Ew kes serleşker bûn, dozger bûn û li vir li ser navê dewletê kar dikirin. Li himberê gelê Kurd siyasetek bi xwîn, qirêj û dijwar dimeşandin ku ti carî nayê jibîrkirin. Ew siyaseta ku xizmên me kuşt û ew kom bi kom di zeviyan de veşartin, divê bê binaxkirin." Sakik da zanîn ku ew wek BDP di parlamentoyê de hertim vê mijarê tînin rojevê û daxwaz dikin ku gorên komî bên vekirin û wê di van rojan de li ser navê grûba xwe daxwaziya damezirandina komîsyonek taybet bikin. Sakik wiha axivî: "Tirkiye çima Peymana Windayan a Dewletên Yekbûyî imze nake? Ji ber ku ditirse. Tirkiye sûcdar e. Lê divê bê zanîn heta ku Tirkiye bi paşeroja xwe re neyê rûbîrû, nikare pêşerojeke ronî ava bike û aştiya navxweyî pêkbîne."

Sirri Sakik destnîşan kir ku ji bo aştî û ewlekarî û baweriya di nav gelan de, damezirandina Komîsyonên Lêkolîna Rastiyan pêwîst e û axaftina xwe wiha bi dawî anî: "Divê ev komîsyon di demeke zûtir de bên damezirandin. Her aliyê Tirkiyê bûye goristanê. Hûn ku derê bikolin an estî derdikevin, an jî çek. Ev çek jî li dijî Kurdan û demokratan hatine bikaranîn."

**Parl. AKP'ê yê Amedê Kurt: Em ne sûcdar in**

Derbarê pirsên me yên li ser gorên komî Parl. AKP'ê yê Amedê Abdurrahman Kurt ragihand ku gorên komî bi xêra hewldanên wan hatine vekirin û got ji bo demokratîkbûna Tirkiyê wan wek hikûmeta AKP'ê gelek gavên girîng avêtine. Kurt bibîrxist ku gorên komî bûyerên gelek kevin in, lê niha derdikevin rojevê û got, "Gorên komî beşek ji dîroka me ya bi êş in. Lê divê bê zanîn ku em wek hikûmet ji van bûyeran ne berpirsiyar in. Bi hewldan û reformên hikûmeta me îro xelk dikare li xizmên xwe bigere."

Derbarê daxwaznameya BDP û CHP'ê ya darizandina kujerên ne diyar de jî Kurt got ku ev daxwazname dûrê dilsoziyê ne: "Herkes dizane, dema ku ev kuştinên kujerên wan ne diyar pêk dihatin, CHP desthilatdar bû. Niha jî daxwaznameya lêkolînê didin. Bila beriya her tiştî dîroka xwe ya tarî ronî bikin. Hûn berpirsiyar in, arşîva xwe veke û bi rayagiştî re parve bike."

**MEYA-DER: Bila Bankeya DNA bê damezirandin**

Komeleya Xizmên Windayî ya Mezopotamyayê MEYA-DER jî daxwaziya avakirina bankeya DNA kir.

Serokê Komeleya Xizmên Windayî ya Mezopotamyayê, MEYA-DER'ê, Ali Ozgen bibîrxist ku ew bi salane hewld didin ku xizmên xwe zindî bibînin, ne ku estiyên wan bibînin. Ozgen wiha got: "Estiyên xizmên me yên ku hatin revandin û lêdan, yek bi yek di gorên komî de tên dîtin. Em di sergoyan de li estiyên xizmên xwe digerin. Mirovatî û rûmeta me ketiye bin lingan."

Ozgen got ligel damezirandina Komîsyonên Lêkolîna Rastiyan damezirandina Bankeya DNA jî pêwîst e û wiha axifî: "Daxwaziya me ji dewletê ew e ku tarîtî bê ronîkirin û kujerên van bûyeran bên darizandin û ji bo vê jî Komîsyonên Lêkolîna Rastiyan bên damezirandin. Piştî re estiyên ku ji goran derdikevin ji bo lêkolînê ji Bankeya DNA re bên şandin."

## Xizmên windayan: Em estiyên xwe dixwazin

**Makbule Fidan: Ez li birayê xwe digerim**

Ez di gorên komî de li birayê xwe digerim. Navê wî Bilal Fidan e. Navê kod Dijwar e. Birayê min di sala 1994'an de ji Amedê tevlî gerîlla bû. Sala 1995'an di şerekî li Farqînê de jiyana xwe ji dest da. Hevalên ku ji şer xilas bûn agahî dan me. Birayê min û çar hevalên xwe li gundê Ergencikê hatine veşartin.

Em çûn gund, kal û pîrên gund jî pistrast kirin, gotin rast e û gora wan nîşanê me dan. Me wêne kişandin, tevî 2 malbatan bi rêya İHD'ê em çûn Dozgeriyê, lê destûr nedan ku em goran vekin.

Em zanin ku birayê me li wir e, em gora wî nas dikin, lê destûr nadin ku em estiyên xwe derxînin. Ez bawerim ji estiyên me jî ditirsin....

**Ayten Yuce: Ez li bavê zarokên xwe digerim**

Ez dayika 3 zarokan im û di gora komî de li bavê zarokên xwe digerim. Navê wî İbrahim Yuce ye, sala 1993'an tevlî gerîlla bû. Sala 1994'an di bernama 'Perde Arkasi' de min dit, hatibû girtin. Roja din min serî li dadgehê da, min got ez dixwazim zilamê xwe bibînim. Gotin 'tu şaş î, me ne dîtiye' Min ew bername qeyd kiriye, ez baş zanim ku ew kes İbrahim e. Min ew band da İHD'ê û parazgerê xwe. Lê gotin "Montaj e, hûn ne rast dibêjin."

Ez baş dizanim ku ew bavê zarokê min bû. Ew 15 sal in ez û zarokên xwe li benda xebekê ne, miriye an zindî ye.

**Şêxmûs Tokar: Ez li bavê xwe digerim**

Ez di gorên komî de li bavê xwe digerim. Navê wî Cemil Tokar e, sala 1999'an li gundê Yogurtyener, bi ser Exhlata Bêdlîsê hat windakirin..

Meha Adarê qereqola Exhlatê bangî wî kirin. Serleşkerê qereqolê Ercument Oral bû.

Ji wê deme ve em lê digerin, lê ti bersiv tune. Tenê gundiyekî bavê min di sala 1999'an de,di meha Nîsanê de li qereqola Bêdlîsê di bin çavan de dîtiye. 11 sal in em li aqibeta bavê min dipirsin, mixabin tiştek me bi dest nexist.

# Xwepêşandana Sûriyê di înternêtê de ma

▶Mistefa Îbrahîm: Serhildan wê bigihîn Sûriyê jî, lê eger Ereb dest pê bikin baştir e.

▶Ebdulbaqî Yûsiv: Kurdan herdem nerazîbûn pêşan dane û Erebên Sûriyê jî bêdeng bûne.

**Besam Mistefa**

Ew bangewaziyên ku hefteya borî bi rêya malperên internêtê û bi taybetî jî de Facebook û Twitterê de hatin belavkirin, ji bo xwepêşandaneke mezin a di roja 5'ê Sibatê de li Sûriyê, li ser rûpelên internêtê man.

Kes û aliyên ku bangewazî weşandibûn, navê wê rojê kiribûn `roja hêrsê`, lê wek rojên ev roj jî li Sûriyê çû ava. Sedemê serekî jî wek çavdêrên siyasî amaje didin nebûna baweriya Kurdan bi aliyên ku bangewazî weşandibûn bû, ango bi muxalefeta Ereb a Sûriyê bi giştî bû.

Piştî serkeftina serhildana gelê Tunisê û reva Zênabidîn Bin Elî, xwepêşandanên cemawerî Misr jî lixwe girtin û ev nêzîka du hefteyane ku Misrî li ser kolan û meydanan daxwaz ji Husnî Mubarek dikin ku ji kursiyê desthilatê bê xwarê. Ev xwepêşandanên gelêrî li çend welatên wek Cezayir, Yemen û Sûriyê jî li keviya teqînê ne.

Sûriyê, ku dagîrkera parçeyê Rojavayê Kurdistanê ye û 3 milyon Kurd lê dijîn, nêzîk bû ku di 5'ê Sibata 2011'an de bibe cihê teqîna xwepêşandanên girseyî yên gelên Sûriyê û xwepêşandanên nerazîbûnê dijî desthilata Beşar Esad destpê bikin. Berî wê rojê web log û malperên opozîsyona Sûriyê û saziyên sivîl û malperên civakî wek Facebook û Twitter bi sloganên li dijî desthilata Beşar Esad tije bûn, wek: Êdî bes e zordarî! Dizî û binpêkirin bes e! Koçberiya ciwanên Sûriyê bo derve rawestînin! Derfetên kar bo derçûyên zanîngehan, na bo mezhebperestî, bes e hejarî!

**Xwepêşandana ku li Sûriyê di 5'ê Sibatê de hati pilankirin, pêknehat. Partiyên Kurd sedemê netevlîbûna xwe diyarkirin: Bê baweriya di navbera hêzên Kurd û Ereban de**

Lê ev dirûşm nebûn hêrsa ser kolanan û bi tenê li ser rûpelên internêtê man.

### Bêdengiya Ereban di dema serhildana Qamişlo li bîra Kurdan e

Partiyên Kurd ên Rojavayê Kurdistanê hê zû ragehandin ku tevî xwepêşandanên 5'ê Sibatê nabin. Endamê Polîtburoya Partiya Yekîtî ya Kurd li Sûriyê Ebdulbaqî Yûsiv derbarê beşdarnebûna wan a di xwepêşandanan de got: "Kesên ku bangewazî ji bo xwepêşandanan dikirin, me wan nas nedikir û me nizanîbû armancên wan çi ne, loma me bersiva bangewaziya wan neda. Nabe Kurd herdem xwe bikin qurban."

Ebdulbaqî Yûsiv amaje da serhildana gelê Kurd a di Adara 2004'an de li Qamişlo û seranserê bajar û bajarokên Rojavayê Kurdistanê û wiha axivî: "Kurdan bi berdewamî nerazîbûn pêşan dan û Erebên Sûriyê jî bêdeng man. Di sala 2004'an de, Kurd li Sûriyê rabûn ser piyan û serî hildan, lê gelek partiyên Ereb ên Sûriyê piştgiriya rêjîmê kirin, lewra em bi hestiyarî berê xwe didin rewşê."

Di Adara 2004'an de, dema Kurdan serî hilda, aliyên opozîsyonê yên Ereb li Sûriyê piştgiriya rêjîma Sûriyê kirin; ango bi kêmanî piştgiriya Kurdan nekirin. Ev jî bû sedem ku bê bawerî di navbera partiyên Kurd ên Sûriyê de çêbibe, lewra jî di `roja hêrsê` de her kes li mala xwe ma. Ji ber wek xuya ye Ereban dixwest Kurd bidin pêşiya wan û dest bi xwepêşandanan bikin.

### Kurdên Rojava ji "rola xurbanî" ditirsin

Serokkomarê Sûriyê Beşar Esad di hevpeyvînekê de bi rojnameya Amerîkî Wall Street Journal ragehand ku: "Rewşa min ji Serokê Misrê Husnî Mubarek baştir e, gelê min wê derfetê bide min ku reforman bikim."

Bêdengiya gelê Sûriyê di roja 5'ê Sibata 2011'an de guman xist ser serhildana vî welatî. Bi dîtina Endamê Polîtburoya Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê Mistefa Îbrahîm: "Opozîsyona Sûriyê ji rêjîma Beşar Esad xerabtir e." Bi baweriya Îbrahîm, serhildan û raperînên ku li çend welatên Ereb qewimîn, di paşerojê de wê bigihin Sûriyê jî, lê navbirî şîretan li Kurdan dike ku insiyatîfê nekin û dibêje: "Eger serhildan li Sûriyê çêbû, bila Kurd serê govendê negirin, ji ber wê demê rejîm dibêje Kurd cudaxwaz in û hêzên derve piştgiriya wan dikin. Lê eger Ereb destpê bikin û em tê de beşdar bibin. Bila serhildan li Şam û Helebê destpê bike, lê ne li Efrîn û Qamişlo."

facebook







**Rastkirin**

*Di hejmara 80 ya Rûdawê de, di rûpela 5'an de, agahiyek şaş hat belavkirin. Di nûçeya "Sûriye 2 ciwanên Kurd li Başûrê Kurdistanê kuştin" de hatiye gotin ku herdu ciwan endamên Partiya Yekîtiya Kurd-PYD'ê bûn. Lê Partiya Yekîtiya Kurd li Sûriyê û PYD (Partiya Yekîtiya Demokrat) du partiyên ji hev cuda ne û herdu ciwan endamên PYD'ê bûn, ne yên Partiya Yekîtiya Kurd li Sûriyê. Ji bo şaşiyê em lêborîna xwe dixwazin.* ***Rûdaw***

**Bayram Ayaz**

## 1989 Dîwarê Berlînê – 2011 Meydana Tahrîrê



Ji roja 25'ê Çileya 2011'an virde ev du hefte ye rojeva cîhanê serhildana Misirê ye.

Serhildana xelkê Misirê bûyereke dîrokî ye. Ev serhildan pêleke nû ye li dijî zilmê, kedxwariyê û belengaziyê. Ji bo taybetiyên vê tevgerê em dikarin bêjin ku ev, serhildana hêzên civakî yên curbecur e ku ji bo azadî, dadwerî û demokrasiyê gihîştine hevdu. Li 'Meydana Tahrîrê' Misulman, Xrîstiyan, liberal, demokrat, muhafazakar, jin, mêr, kal û genc li hev civiyane, armanceka wan hevbeş heye: Rejîma otoriter birûxînin û Husnî Mubarek dev ji desthilatê berde, bireve.

Durûvê vê serhildanê û ruxandina Dîwarê Berlinê gelekî dişibin hevdu. Serhildanên sala 1989-1990 dawî li rejimên otoriter û bloka dewletên sosyalîst anî. Li welatên rojhilatê Ewrûpayê rejimên pir partîtî pêkhatin û li van deran sistemên demokrasiya rojavayî hat pêkanîn. Li rojhilatê Ewrûpayê rûpeleke nû destpê kir. Sînorê Yekitiya Ewrûpayê gîha Behra Reş.

Piştî bist salan li bakurê Afrîkayê û li welatên Ereb serhildanan destpê kir. Vê carê ferqekî girîng heye: Ev serhildan li dijî rejimên hevbendên Amerîkayê û Ewrûpiyan pêktên. Cihana du blokî nema. Êdî bi aşkere parastina rejîmên otoriter zehmet e. Amerika û Ewrûpa jî mecbûr in goh bidin daxwazên gel û van serhildanan.

Misir girîng e. Bandora tevgerên li Misirê li ser hemû welatên derdorê çêdibe. Ji niha ve Rojhilata navîn dikele. Rejima Mubarek êrîş bir ser serhildanê, xwest wê biperçiqîne. Lê nikaribû, niha dixwaze demê serhildanê dûrdirêj bike, daku xelkê biwestînê û bêhal bixe. Lê xelk bi wêrekî berxwe dide. Şansê Mubarek nema, ew êdî yê çûyinê ye. Bi çiqasî serkevtin nêzîk be, wê bandora xwe li ser psikolojiya civakî û wêrekiya pêşengên tevgerên welatên derdor zûtir nîşan bide. Hêzên statukoparêz li berxwedidin, ka çawa pêşî li vê şoreşê bigrin, nehêlin belav bibe. Nikarin! Tirsa xelkên Rojhilata navîn şikiye û destpê kirine li dijî dîktatoran serî hildidin. Ev pêleke nû ya bizava azadîxwazî û demokrasiyê ye. Tevlihevî wê demekî bidome, lê dem û dewranê dîktatorî, emirî û kraliyetan êdî bi dawî tê.

Serhildanê rastiyeke din jî derxist holê. Demê hêza medya nû (teknolojiya tekiliyên siber) û hêza civakê (fizîkî) bibe yek, êdî kes nikare li pêş şoreşên gel raweste.

Tevgera azadîxwaza Kurdistanê hewce ye xwe ji vê cureyê serhildan û şoreşê re amade bike, bi taybetî li Tirkiyeyê û Suriyê. Îran jî di dorê de ye.

## Cîgira Serokê Komîteya Cîbicîkirina Maddeya 140'ê Nermîn Osman:

# Heta 4 salên din jî maddeya 140'ê nayê cîbicîkirin

▶Ji ber tirsa Îran û Tirkiyê aliyekî Şî`e nikare helwêsta xwe derbarê madeya 140'ê de eşkere bike

▶Ji bo cîbicîkirina madeya 140'ê ji aliyê Malikî xemsariyeke zêde heye

▶Umer Cibûrî li Kerkûkê û Usama Nucêfî li Nînewa ji bo acendaya Tirkiyê dijayetiya madeya 140'ê dikin


Kerkûk jî yek ji wan herêmên nakok e ku pirsgirêka wê di madeya 140'ê de tê çareserkirin.

Cîgira Serokê Komîteya Cîbicîkirina Maddeya 140'ê ya destûra Iraqê Nermîn Osman di hevpeyvînekê de bi Rûdawê re diyar dike ku heta 4 salên din jî maddeya 140'ê nayê cîbicîkirin û Malikî û aliyên din ên Iraqê jî di cîbicîkirina vê maddeyê de ne ciddî ne. Nermîn got aliyekî Şî`e bi cîbicîkirina vê maddeyê re ye, lê ji tirsa Îran û Tirkiyê nikare helwêsta xwe eşkere bike.

**Rûdaw: Piştî 8 salan ji ketina rêjîma Saddam, gelo maddeya 140'ê di çi qonaxekê de ye?**

Nermîn Osman: Dixwazim vê maddeyê bi awayekî kurt bidim naskirin, da ku li cem xwendevanan diyar bibe ka em di çi qonaxekê de ne. Maddeya 140'ê ji 3 qonaxan pêk tê: Normalîzekirin, ku ji tawîzkirin, vegerandina zeviyên çandiniyê û destnîşankirina sînorê fermî yê navçeyên ku dikevin ber vê maddeyê de, pêk tê. Qonaxa duyem, serjimêriya li navçeyên cihê nakokiyê ye û ti têkiliya wê bi serjimêriya giştî ya daniştvanên Iraqê re nîne. Qonaxa sêyem jî, bi mebesta yekalîkirina çarenivîsa van navçeyan referendum e ku ew jî divê li gor serjimêrî û amarên sala 1957'an a Iraqê bin. Niha em di destpêka cîbicîkirina qonaxa yekem de ne, ku ew jî tawîzkirin e. Heta niha me ji bo navçeyên Kurdnişîn 972 milyar dînarên Iraqî xerc kiriye û bo xilaskirina vê qonaxê pêwîstiya me bi 700 milyar Dolarên Amerîkî heye.

**Gelo hikûmeta Iraqê niha razî û amade ye van 700 milyar Dolarên Amerîkî bide?**

Di proje-yasaya butçeya giştî ya Iraqê ya 2011'an de, hikûmeta Iraqê tenê 172 milyon dolar veqetandin. Kurd vê yekê red dikin û li benda serastkirina projeya butçeyê ne.

**Heta niha çend pirsgirêkên milkdariya zeviyên çandiniyê hatine yekalîkirin?**

Dikarim bêjim ji sedî 80 xilas bûne. Niha zêdeyî 3300 kesên Ereb ku zeviyên Kurd û Turkmenan dagîr kirine, dema Erebkirina Kerkûkê di serdemê rêjîma Beisê de daxwaza tawîzkirina projeyên xwe yên ku li ser van zeviyan çêkirine, dikin. Pêwîstiya vêya jî bi nêzîka 15 milyar dînarên Iraqî heye. Ev jî e li ber maddeya 140'ê pirsgirêkeke din e.

**Hûn çawa dikarin, wek beşekî girîng ê cîbicîkirina maddeya 140'ê, sînorê îdarî yê parêzgehên Kerkûk, Nînewa û Diyala diyar bikin?**

Bi rastî me hemû karên xwe kirine û bidawî anîne. Ez seroka komîteya destnîşankirina sînorê îdarî ya navçeyên Kurdnişîn bûm. Bi rêya belgeyên fermî yên Iraqê ku hemû di rojnameya fermî ya Iraqê de hatine belavkirin û li gor dokumentên resen û sînorê îdarî yê sala 1975'an, me sînorê îdarî yên parêzgehên Kerkûk, Nînewa û Diyala diyar kirin û rapora xwe pêşkêşî Serokwezîrê Iraqê Nûrî Malikî kir, lê ji ber ew di desthilata serokayetiya komarê de ye, heta niha ti pêngavê neçûye pêş.

**Çima serokatiya komara Iraqê behsa vê mijarê nekiriye, tevî ku serokkomar Kurd e?**

Di maddeya 140'ê de derbas dibe ku divê serokatiya komara Iraqê derbarê diyarkirina sînorên îdarî yên navçeyên ku dikevin çarçoveya maddeya 140'ê de rapora xwe bide parlamentoya Iraqê, lê Tariq Haşimî li dijî vê pêngavê bû. Adil Ebdulmehdî jî got, divê sînorê îdarî yê hemû navçeyên ku dikevin çarçoveya maddeya 140'ê wek navçeyên başûrê Iraqê bên destnîşankirin, loma Mam Celal jî rapora xwe pêşkêş nekir, eger pêşkêş bikira wê li parlamentoya Iraqê şikest baniya.

**Niha Erebên şoven ku Nucêfî û Cibûrî serokayetiya wan dikin bi çend Turkmenên tundrew re, bi hemû awayan û bi tundî li dijî madeya 140'ê ya destûra Iraqê ne.**


Wêne: Rûdaw

**Lê di vê gerê de tenê mafê veto yê Talabanî heye. Li gor lihevkirina siyasî û herdu cîgirên wî nikarin biryarên wî veto bikin, gelo bi baweriya we wê Mam Celal vê carê raporê bide parlamento?**

Ne girîng e raporê pêşkêş bike, lê divê em bi awayekî ciddî bi mebesta çêkirina lobiyekî li parlamento hewl bidin da ku bi me re ji bo diyarkirina sînorên navçeyên cihê nakokiyê deng bidin.

**Li gor we, îro ti lîsteya Iraqî piştîvaniya we dike?**

Cîbicîkirina maddeya 140'ê, di pêkanîna hikûmeta nû ya Iraqê de şertekî beşdariya Kurdan bû. Aliyê Şî`e hemû daxwazên Kurdan, maddeya 140'ê jî di nav de, îmze kirin û divê em bi awayekî ciddî hewl bidin da ku ew jî bi me re deng bidin rapora me.

**Bi dîtina we serokwezîrê Iraqê Nûrî Malikî di cîbicîkirina maddeya 140'ê de ciddî ye?**

Na, ne Malikî û ne aliyên din ên Iraqê di cîbicîkirina maddeya 140'ê de ne ciddî ne, lê dikarim bêjim xemsariyeke zêde ji aliyê Malikî bo vê maddeyê heye.

**Li Iraqê kî bêtir dijayetiya cîbicîkirina maddeya 140'ê dike?**

Bawer dikim her kes dizane ku niha Erebên şoven û tûndrew ku bi serokatiya Umer Cibûrî li Kerkûkê û Usama Nucêfî li Nînewa tevî hinek Turkmenan bi hemû awayan dijayetiya maddeya 140'ê dikin.

**Helwêsta aliyên Şî`e derbarê cîbicîkirina amdeya 140'ê çi ye?**

Şî`e piştgiriya cîbicîkirina vê maddeyê nakin. Niha aliyekî Şî`e heye naxwazim navê wan bêjim, ku ev madde bê bicihkirin, lê ew jî ji Îran û Tirkiyê ditirsin û helwêsta xwe eşkere nakin.

**Çima ji Îran û Tirkiyê ditirsin?**

Bi awayekî eşkere destê Tirkiyê di bicihnekirina maddeya 140'ê de heye.

**Çawa?**

Tirkiyê piştîvaniya Nucêfî û Cibûrî û Bereya Turkmenî û hinek aliyan dike da ku acendaya Enqere li Iraqê ku xaleke wê cîbicînekirina maddeya 140'ê ye, bê cîbicîkirin bi mebesta ku Kerkûk û navçeyên veqetandî yên din nevegerin ser Herêma Kurdistanê.

**Nûrî Malikî û aliyên Şîi yên Îraqê projeya Kurdî ku ji 19 xalan pêk tê îmze kirine û Kurdan jî di beşdarbûna hikûmeta Îraqê de ew kirine şertekî sereke. Gelo ew madde wê di vê demê de bê cîbicîkirin?**

Kurdan ji bo cîbicîkirina wê re 2 sal danîne, yanî divê heta dawiya 2010'an bê bicihkirin.

**Lê pirsa me ew e, wek bilindtirîn berpirsa Kurd hûn di komîteya cîbicîkirina maddeya 140'ê de ne, bi dîtina we wê ev madde di vê demê de bê bicihkirin?**

Na, Malikî qet vê maddeyê di 2 salan de cîbicîh nake. Eger kar jî li ser bê kirin heta 4 salên din jî nayê bicihkirin û ez xwediya gotina xwe me.

**Li gor peymana stratejîk navbera Bexda û Washingtonê de heta dawiya îsal hemû hêzên Amerîka ji Iraqê vedikişin, gelo wê demê çareseriya vê maddeyê û navçeyê çawa dibe?**

Bila Kurd ji bo bicihanîna maddeya 140'ê pişta xwe bi Amerîka germ nekin. Lê divê girîngiyê bidin aliyên Iraqî, da ku bikarin li parlamento ji bo serxistina vê maddeyê karekî baş bikin.

**Amerîka pişta xwe dide Kurdan?**

Bawer nakim Amerîka qet pişta xwe bide Kurdan, lê ev nayê wateya ku hemû daxwazên me cîbicîh bike.

**Niha rola Neteweyên Yekbûyî di cîbicîkirina maddeya 140'ê de çi ye?**

Dema ku Stevan Demestora nûnerê NY li Iraqê bû, çalakiyên wî li ser maddeya 140'ê zêde bûn û herdem bi me û hemû aliyan re diciviya, da ku ev madde bê bicihanîn. Lê piştî hatina Ad Melkert, heta niha serdana Komîteya Bilind a Cîbicîkirina Maddeya 140'ê nekiriye û ti civîn, pêşniyar û insiyatîvek nekiriye. Dikarim bêjim Demestora pir ji Melkert baştir bû.

# ‘Kick Off Kirkuk’ ket sînemayên Almanyayê!

Derhêner Şewket Emîn Korkî fîlmê xwe yê duwemîn ê ku gelek xelat girtine “Kick Off Kirkuk” di sala 2009’an de li stadyûma bajarê Kerkûkê kişandiye. Korkî di vî fîlmî de bal dikişîne ser mijarên balkêş ên cîvakî; evînî, birîndarî, xemgînî û mirin jî bandora xwe li ser mijara fîlm çêdike.



**Alî Guler** Berlîn

Fîlmê derhênerê Kurd Şewket Emîn Korkî yê bi navê ‘Kîck Off Kirkuk’ vê heftê li seranserê Almanya dikeve vîzyonê. Fîlm li bajare Kerkûkê pirsgirêka komek xizanan tîne ser perdeya spî.

Fîlmê gelek bi xelat “Kick Off Kirkuk” li Almanya li bajarên wek Berlîn, Koln, Hamburg û gelek bajarên din ji 10’ê Sibatê û şûn de di sînemayan de tê nîşandan. Belavkirina film ji aliyê şîrketa Mitosfîlm tê kirin.

Fîlm heta niha di Festîvala Fîlman a Pusan û gelek festîvalên cîhanê yên din de hatiye nîşandan û xelat wergirtiye. Fîlmê navborî di sala 2009’an de li bajarê Kerkûkê hatiyê kişandin û fîlmê Korkî yê duyemîn e. Wekî fîlmê xwe yê din, Korkî di vir de jî bal dikişîne ser mijarên balkêş ên cîvakî.

**Mirin, evîn û xizanî: Kick Off Kirkuk**

Di stadyuma Kerkûkê de komek Kurd, Tirkmen û Ereb dijîn. Ev koma xizanan ji ber neçariyê li wir dijîn. Ev kes di dema Saddam Huseyîn de ji bajêr hatibûn qewitandin. Gava Saddam ji desthilatdariyê dikeve ev kes vedigerin bajarên xwe, lê cih û warê xwe nabînin. Ew jî mecbûr dimînin ku li stadyumê bijîn. 300 malbat di nava tunebûn û xizaniyek mezin de ji xwe re Stadyûmê dikin warê jiyanê. Derhenêr Şawkat Amin Korkî jî ev mijara balkêş a dramatîk, bi awayek ken û laqirdiyan, bi riya sînemayê tîne rojevê. Fîlm hemû di stadyûmê de derbas dibe.

Xortê bi navê Aso dixwaze ciwanên li wir dijîn li dora gokê bicivîne û di navbera wan de têkiliyek çêke. Aso bi arîkariya havalên xwe vê yekê pêk tîne. Li stadyûmê turnovayek fûtbolê li dar dixe. Evîn, birîndarî, xemgînî û mirin jî bandora xwe li ser mijara fîlm çêdike. Paşê li bajêr bi teqînek bombeyê Aso jîyana xwe ji dest dide. Birayê Aso Diyar jî ji ber mayînan lingek xwe winda kiriye, ew jî birîndar e. Li aliyên din jî rêvebiriya bajêr dixwaze wan kesan ji stadyûmyê derxîne, bêyî ku ji wan re cîhekî din pêşniyar bike.




# Wikileaks jî namzeta wergirtina xelata Nobel a Aştiyê ye

**Rûdaw -** Ji ber belavkirina bi sedan belgenameyên veşartî yên li ser şerê Afganistan, Îraq û bi hezaran nameyên dîplomatên Wezareta Derve ya Amerîka; komîteya dadwerî ya xelata Nobel a li Norwecê malpera Wikileaks ji bo wergirtina xelata aştiyê bernamzet kir.

Alîkarê Serokê Parlementoya Norwecê Sinur Valin, namzetkirina malpera Wikileaks ji bo wergirtina xelata Nobelê piştrast kir û ragihand: "Ji ber ku li cîhanê şoreşek mezin ji bo pêkanînên aştî, azadiya fikrî û şefafiyetê peyda kir, Wikileaks ji bo wergirtina xelata Nobel a aştiyê ya îsal hatiye namzet kirin."

Di meha Sibata her salê de, Komîteya Dadwerî ya Xelata Nobel navê kes û aliyên ji bo wergirtina Xelata Nobel tên namzet kirin, eşkere dike.

# Keştiya Nûh li Rûsya ye



**Rûdaw -** Endazyarê Rûs A. Nimiyof, keştiyek ava kiriye ku dikare 10 hezar kesan hilgire û navê wê jî kiriye Keştiya Nûh.

Ev keştî ji bo di dema karasatên mezin ên wekî tofan û erdhejên mezin de bibe stargehek ewlehiyê bi şêweyê sedefê hatiye dîzaynkirin. Ev keştî bi awayekî hatiye dîzaynkirin ku hemû tiştên ji bo destpêkê pêwîst, di nav de hatine bicihkirin. Wek; cihê ji bo çandina keskatî, fêkiyên pêwîst, patriyên tavê û sîstemek jî ji bo komkirina ava baranê hatiye avakirin ji bo ku kesên di nav de demek dirêj zindî bimînin.

Nimiyof hinek giya jî di keştiyê de çandine ji bo ku gazên zerermend bikêşe û hewayê nû û Oksîjena pêwîst bide, herwiha ji bo tirêjên zerermend bigre giyayek li ser heye .



# Christina Aguilera dibe model

**Rûdaw-**Stranbêja Amerîka ya navdar, Christina Aguilera dixwaze êdî stranan nebêje û berê xwe bide pêşkêşkirina modelên cilûbergan û ji bo wê armancê jî şîrketeke çêkirina cilûbergên jinan a bi navê "Agî" damezirand. Agî kurtiya navê wê yê duyemîn e.

Christina Aguilera (31) bi eslê xwe ji Arjantin e û niha bi avakirina wê şîrketa li bajarê Los Angeles re mijûl e, ew dixwaze cilûbergên wê şîrketê bi xwe pêşkêş bike, Aguilera dibêje: "Bi baweriya min baş e ez vê rêyê ji bo dahatûya xwe hilbijêrim û ev yek ji xewnên min bû."

Christina Aguilera 3 salî heye û zêdetirî 5 salane têkiliyên evîniyê ligel aktorê Holywoodê Colin Farrell, heye. Aguilera dibêje: "Ez dixwazim salane berhemên min ên nû yên cilûbergên jinan hebin."

# Mûrad muzîka kurdî dibe Polonya û Swêdê

**Tehran (Rûdaw) -** Mûzîkvanê Kurd ê navdar Elî Ekber Mûradî, îsal li Polonya û Swêdê du konserên mûzîka kurdî li dar dixe.

Muzîkvan û awaz danerê navdar ê Kirmanşanî Elî Ekber Mûradî, wê konserên xwe li meha Adar û Hezîranê li Polonya û Swêdê li dar bixe.

Elî Ekber Mûradî ligel herdu kurên xwe Ariş û Kurûş wan herdu konseran bi rêve dibe.



# Temenê hevjîniyê dibe 16 sal



**Rûdaw -** Hikûmeta Îspanya lêkolînê li ser wê yekê dike ku temenê hevjîniyê li gor yasayên Neteweyên Yekbûyî lêbike, ango bike 16 salî.

Wezîrê Tendirustî û Karûbarên Civakî yê Îspanya di daxuyaniyeke çapemeniyê de diyar kir ku wezareta wan bi alîkariya komeke pisporên warê civakî mijûlî amadekirina proje-yasaya parastina zarok û zêdekirina temenê hevjîniyê ne ku ji 14 salî bikin 16 salî, lê heta niha di wê derbarê de ti biryar nedane.

Li gor yasaya hevjîniya Îspanya ya niha, rê ji keç û kurên temen 14 salî re tê dayîn ku hevjîniyê pêkbînin piştî ku malbatên wan razî dibin. Di 10 salên borî de li Îspanya 362 kesên temen 14-15 salî hevjînî pêkanîne.

## Pereyên hinekan hatin xwarin û derdê wan jî nehat derman kirin

# Nexweşên Kurdistanê berê xwe didin Almanya

▶Nûnerê Şirketa Transreisen: Bêtiriya kesên tên nexweşiyên dil, piştê pê re ye

▶Nexweşekî Kurd: Bila nexweşên Kurd bên Almanya û neçin welatên din

▶Erebekî ji Bexda: Min 9 hezar Euro dan, pere çûn û nexweşê min jî nehat tedawîkirin

**Silêman Alîxan**

Berî çend salan hatina nexweşan ji Başûrê Kurdistanê bo Ewrûpa û bi taybetî Almanya pir bi zehmet bû, ji ber ku pêwîst bû ew ji bo standina vîzeyê serî li balyozxaneya Almanya ya li Enqere, yan Emman û Şamê bidin. Çûna wan welatan ji Kurdistanê ne hêsan bû û tenê hin berpirs dikarîbûn biçin û bên, loma ew ji bo dermankirinê tenê dihatin Almanya. Lê piştî ku Almanya konsolxaneya xwe li Hewlêrê vekir, êdî ew rê hêsantir bû, ji ber ku vîze li wir û li Bexda jî tê dayîn.

Celal Salih (42) nexweşekî ji Başûrê Kurdistanê ye di destpêka vê salê de hatiye Almanyayê û ji guhê xwe ve emeliyat bûye. Celal ji xizmetên tendirustî yên Almanya gelekî razî ye û dibêje "Li vir xizmetên tendirustî gelekî baş in, pizîşk gelek baş çavdêriya nexweşan dikin." Ew Kurdê ji bajarê Duhokê bi arîkariya xwarziyekî xwe yê ku li Almanya dijî hatiye Almanyayê: "Min raporên pizîşkan birin konsolxaneya Almanya ya li Hewlêrê û piştî deh rojan vîze dan min." Celal ku li ser hesabê xwe hatiye, berê çûbû Sûriye û Tirkiyê jî û dibeje ku "Ti hevberkirin di navbera xizmetên tendirustî yên vir û wan welatan de nîne, ji ber ku gelekî ji hev cuda ne. Divê nexweş hewl bidin xwe bighînin Almanyayê, lê neçin welatên derdora Kurdistanê."

### Pêwîst nake nexweş biçin balyozxaneyê

Ji bilî rêya kesûkar û nasan, hin sazî jî hene nexweşan tînin Almanyayê. Yek ji wan şîrketa Transreisen a şêwirmendiyê. Nûnerê wê şîrketê Salar Sadullah ji bo Rûdawê got "Ji bo ku çareseriyê bibînin, em hemû hêsankariyan ji nexweşan re dikin." Salar got dema nexweş dighin firokxaneyê, ew bi wan re ne, heta vedigerin welat: "Em li her cihî bi nexweşan re ne û wergêrê me hertim di xizmeta wan de ne." Nûnerê Transreisen behsa wê yekê jî kir ku herî zêde di 2 mehan de kaxetên nexweşan temam dibin û niha vîze li Bexda û Hewlêrê tê dayîn û êdî kes naçe Enqere. Gelek nexweşên ku niha tên Ereb in û Dezgeha Şehîdan a Îraqê wan dişîne û xerciya wan dide. Lê herwiha nexweşên Kurd jî tên, weke ku Salar dibeje: "Em nexweşên Kurdistanê naşînin Balyozxaneya Almanya li Bexda, ew dikarin kaxetên xwe bidin şofêrê taksiyekê ku bighîne balyozxaneya Almanya ya li Bexda û bersivê ji konsolxaneya li Hewlêrê bigrin." Derbarê nexweşên ku tên Almanyayê, Salar got: "Bêtiriya wan nexweşiyên dil û piştê ne." Salar ew yek jî eşkere kir ku ew doktoran destnîşan dikin, "Lê ku nexweşek bixwaze profesorek tedawiya wî bike, em wê jî dabîn dikin, lê wê demê buhatir e." Gelek nexweşên ku bi rêya vê şîrketê hatine Almanya û tên tedawîkirin, ji bo Rûdawê pesna xizmetên Transreisen dan. Melka Şahîn (50) Kurdeke Feylî ye û dayika şehîdî ye, kanser di piyên wê de heye û ew ê demeke din jî bimîne. Melka bi rêya Transreisen hatiye û Dezgeha Şehîdên Îraqê xerciya wê daye, "Ez ji xizmetên tendirustî û yên şirketa Transreisen gelekî memnûn im."


Wêne: Rûdaw

**Li ser piya: Bedro Xalid Nûnerê Saziya Şehîdên Îraqê, Faris Omer, kaxetên girêbesta anîna nexweşan ji bo Almanya îmze dike.**


Wêne: Rûdaw

**Kurda Feylî, Melka Şahîn li ser hesabê Saziya Şehîdan a Îraqê li nexweşxaneyeke Almanya tê tedawîkirin.**

### Pere çû û xizmê wî jî nehat

Hin kesan ji bo Rûdawê behsa wê yekê kirin ku şirîkê Salar Sadullah ê bi navê Bedro Xalid ku xwediyê buroya Furatreise ya seferê bû, pereyê wan xwariye û reviyaye û nexweşên wan jî neanîne Almanyayê. Hevwelatiyê Ereb ê Îraqî bi navê Îhsan ku xelkê Bexda ye û ev çendîn sale li Almanya dimîne, eşkere kir ku xizmekî wî li Bexda nexweş bû û wî jî xwest bîne Almanyayê: "Min 9 hezar Euro dan Bedro Xalid, lê pere çûn û nexweş nehat. Bedro jî reviya û kes nizane li ku ye. Min li cem PDK'ê giliya wî kiriye."

**Ku xelk bi fermî giliyê bikin em ê giliyên wan bighînin Hikûmeta Kurdistanê, ji ber ku li vir em nikarin tiştekî bikin.**

Elî jî Kurdekî Başûrê Kurdistanê ye ku serê wî ketiye belayê. Elî berê çîroka xwe ji hevkarekî Rûdawê re vegotibû û diyar kiribû ku wî xwestibû arîkariya hevalekî xwe yê penaber bike ku jina wî bîne Almanya "Baweriya min bi Bedro Xalid hat û min 16 hezar Euroyên hevalê xwe dan wî." Niha Elî nizane çi bike û dibêje: "Kêm maye hevalê min dîn bibe, ji ber ku rûniştina wî tune û çendîn salan kar kir heta karî wan 16 hezar Euroyan kom bike."

Nûnerê PDK'ê Segvan Berwarî, nûçeya xwarin pereyên xelkê û diyarnemana Bedro Xalid pişt rast kir û got "Gelek kesan bi devkî giliya Bedro kirine, lê kesî bi fermî gilî ne kirine, eger bikin em ê bighînin Hikûmeta Kurdistanê, ji ber ku li vir em ne desthilatdar in û nikarin tiştekî bikin." Şirîkê Bedro Xalid yê berê û nûnerê niha yê şirketa Transreisen, Salar Sadullah amaje da wê yekê ku Bedro di serî de ligel wan bû, "Lê dema me destpêkir ew nema, ji ber derew û diziyên wî eşkere bûn." Salar got ku niha ti peywendiya wan bi Bedro nîne û "Bedro pereyên me û yên xelkê jî birin." Ercan jî ku Turkemenekî Hewlêrê ye û li Enqere bazirganiyê dike, li gor zanyariyên Rûdawê wî demeke dirêj bi Bedro re kar dikir, lê Ercan ji bo Rûdawê got ku wî tenê çend hefteyan bi Bedro re kar kir: "Hemû nexweşên ku dihatin vir xelkên Duhok û Zaxo bûn. Ez ne şirîkê Bedro bûm, lê tenê wergêr bûm, carnan 200 Dolar didan min, lê ji nişkave Bedro Xalid wenda bû û êdî kar jî nema û ez nizanim li ku derê ye."

Li gor zanyariyên Rûdaw Bedro Xalid bi arîkariya birayên xwe yên li Zaxo bi sedan hezaran Euroyên xelkê birin û niha cihê mayîna wî nediyare. Rûdawê telefona birayekê Bedro Xalid kir, lê bersiv neda.

## Penaberê Kurd ê sêyem li Brîtanya xwe kuşt

*London (Rûdaw) - Berî çend rojan li paytexta Brîtanya Londonê penaberekî Kurd ê ji Başûrê Kurdistanê xwe kuşt. Li gor nûçeyeke Federasyona Penaberên Îraqî (FIRI); Rêkewt Reşîd 11 sal bû li Brîtanya jiyan dikir, ji ber ku ti hêviyên wî nemabûn ku Hikûmeta Brîtanya mafê penaberiyê bide wî, di odeya xwe de werîsek têxe qirika xwe û xwe dixeniqîne. Li gor raporan, ev penaberê Kurd ê sêyemîne ku di 6 mehên borî de xwe dikuje. Herdu penaberên din jî bi navê Osman Resûl û Hisên Elî bûn. Ew jî bi heman awayî ji ber ku mafê penaberiyê ji aliyê Hikûmeta Brîtanya ve hat red kirin, xwe kuştin.*



### Ji bo danînîna Monûmenta Helebce li Den Haagê

# Hevrikiya Partiyên Kurdan dibe asteng

▶Dana Helebceyî: Gelek kesan wisa fam kiribûn ku monûment muzexaneyeke mezin e wek a Helebce.

▶Herdu parlamenterên Holendî di sala 2009'an de gihiştin vê baweriyê ku kar nayê kirin û baştir e dawî lê bînin

**Holenda (Rûdaw) -** Projeya monûmentê Helebce li bajarê Den Haag li Holenda ku Partiya Sosyalîst a Holendî SP ji butçeya xwe 200 hezar Euro jê re veqetandin, hê nehatiye çêkirin. Kesê ku bi rêvebirina karên vê projeyê ve mijûl dibe jî sedemê vê derengketinê vedigerîne wê yekê ku her partiyeke Kurdistanê dixwaze xwe wek xwediyê projeya han nîşan bide.

Sala 2008'an bi insyatîfa parlamenterê ser bi Partiya Rastbîr VVD Fred Teffin, û parlamenterê Partiya Sosyalîst a Holendî SP Harry Van Bomel, ku herdu jî dostên gelê Kurd in, bo çêkirina projeya monûmenta Helebce li bajarê Den Haag, dest bi kampanyeke komkirina dengan kirin. Bo heman mebestê jî peywendî bi partî û rêxistinên Kurdî li Holenda kirin û derbarê projeyê de gelek civîn hatin sazkirin.

Endamê damezrênerê rêxistina Çak û endamê rêxistina Qurbaniyên Helebce Dana Helebceyî, ku di heman demê de endamê SP ye û sala 2010'an li ser lîsteya vê partiyê xwe bo şaredariya Den Haag berbijar kir, yek bû ji beşdarên van civînan û ev zêdeyî 3 salane jî çêkirina vê projeyê dişopîne.

Dana wek kesekî haydar ji hurdekariyên pirsgirêkên vê projeyê dibêje: "Di van civînan de tênegihiştineke akadîmîk bo kar çêbû ji aliyê kesên ku dixwestin bên nav kar ji herdu aliyên Kurdî û Holendî, ji ber gelek kesan wisa fam kiribûn ku monûment muzexaneyeke mezin e wek a Helebce ye, lê bi rastî herdu parlamenterên Holendî zêdetir behsa peykerekî dikirin."

Dana dibêje parlamenterên Holendî xwestin bi Kurdan re mekanîzmeke wisa bibînin ku hem Hikûmeta Herêma Kurdistanê alîkariya wan bike û hem jî rêxistin, bi awayekî ku karekî kollektîv be û bibe malê hemû aliyan, lê: "Piştî civîn û gengeşeyên zêde ku her partiyekê berbi xwe ve dikişand, herdu parlamenterên Holendî di sala 2009'an de gihiştin vê baweriyê ku kar nayê kirin û baştir e dawî lê bînin." Dana Helebceyî ku ji 1992'an ve li Holenda dijî wiha axivî: "Her kesî dixwest bi navê partiya xwe bike. PDK, YNK, ÇAk û filan û bêvan. Wisa dawî li kar hat û her kes çû mala xwe."



Wêne: Rûdaw

Sala 2008'an bi însyatîfa du parlamenterên Holandî ji bo çêkirina monûmenta Helebce li Den Haag dest bi kampanyekê hat kirin

**Mebesta Van Bomel ew e bi rêya partiya xwe tawanên li dijî gelê Kurdistanê li ser astê navnetewî wek cînosîd bên naskirin. Ji bo vê mebestê jî bi niyet e ku li Brûkselê konferanseke cîhanî li dar bixe.**

Navbirî ku bi girîngiyeke zêde behsa vê projeyê dike bo nasandina cînosayda Kurdan bi Ewrûpiyan, got: "Min got çênabe ev proje bemire, loma min di Adara 2010'an de biryar da xwe berbijar bikim bo şaredarniya Danhkah da bikarim li wir dengan bo projeyê kom bikim, ji ber parlamento gotibû divê şaredariya Den Haag razîbûnê li ser bide. Pêwîstiya projeyê jî li civata şaredariyê bi tevahiya dengan dibû, lê hevdengiyek li ser nehat misogerkirin."

Dana di vê hilbijartinê de dirûşma çêkirina monumentê Helebce û damezrandina navendeke lêkolînê bo cînosayd bilind kiribû, lê nekarî bigihe civata şaredariyê: "Kurdên Bakur pir alîkariya min kirin. Ez vexwendim konferanseke xwe û rê dan min baxivim. Nûnerê PDK'ê Umer Zawîteyî jî li Holenda bi coş û hesteke Kurdewarî ez vexwendim konferansekê ji bo ku baxivim."

Dana piştî ku yasaya şaredariyan li Holenda dixwîne, jê re derdikeve ku ji bilî hevdengiya endamên civata şaredariyê bo çêkirina projeyekê, dikare bi rêya komkirina îmzeyan jî vêya bike, loma dest bi kampanyeke komkirina îmzeyan dike: "Xelkê bersiva kampanyayê dan û me nêzîkî 3 hezar îmzeyan kom kirin û bi şaredariya den haag re axivîm."

Helebceyî par tevî Harry Van Bomel serdana Kurdistanê kir. Wek Dana dibêje, bernameyeke din bi Van Bomel re heye bo nasandina cînosayda Kurdan li Ewrûpa: "Mebesta Van Bomel ew e bi rêya partiya xwe û li ser astê navnetewî van tawanan bide nasîn û wek cînosayd bên naskirin. Bo vê mebestê jî bi nêt e konferanseke cîhanî li Brûkselê saz bike." Navbirî herwiha dibêje: "Em çûn Kelar, li wir bexçeyek bi navê Harry Van Bomel vekirin. Harry parka xwe vekir û pişt re me herduyan serdana bajarê Helebce kir. Li wir behsa projeya xwe ji xelkê re kir û projeyeke din jî anîbû ku dixwaze di navbera zanîngeha Rotterdam û zanîngeha Selahedîn bordeke pizîşkî çêbike bo kesên ku rastî nexweşiyên piştî şer tên wek nexweşiyên civakî û pisîkolojîk.

Derbarê danîna monûmentê Helebce li welatê Holenda, Dana got: "Eger nekeve nav hevrikiya partiyan de, ez ê bi Harry Van Bomel re vê projeyê bicîh bikim. Eger parêzkarên Holenda jî astengiyan ji me re derxin dîsa em ê kampanya komkirina îmzeyan bikin." Dana dibêje piştî vê ew ê bi rêya Dezgeha Cînosayda Gelê Kurd, karê arşîvkirin û dokumentkirina hemû bûyerên cînosaydê bike.

**Em hewl didin ku monûment li cihekî pir girîng be ku rojane bi kêmanî 200 hezar kes lê binêrin.**

Hê cihê monûmentê nehatiye diyarkirin, lê Dana dibêje: "Em hewl didin li cihekî pir girîng be ku rojane bi kêmanî 200 hezar kes lê binêrin. Cih dikeve himber baregeha Rêxistina Navneteweyî ya Nehiştina Çekên Kîmyayî OPCW. Pir geşbîn im bi pêkanîna projeyê, lê tenê ditirsim bikeve nav hevrikiya partiyan. Hêvîdar im hemû alî piştgiriya vê projeyê bikin ji ber ew malê hemû Kurdane."

## Benzîna bê dûkêl dikeve bazaran

*Rûdaw - Zanyarên Birîtanî ji Hîdroenê cûrekê benzînê çêkirine ku dûkêle nake û jîngehê pîs nake.*
*Zanyarên Birîtanya ew benzîn bi rêya gaza Hîdrojenê çêkirine, sê qasî benzîna normal enerjiyê dide û piştî dagirtina otomobîlê ji wê benzînê, dikare di demjimêrekê de 500-650 km rê bajo.*
*Wê ev benzîn heta 3-5 salên din bikeve bazarê û wekî alîkarê benzîna normal hatiye hilberandin.*
*Yek ji zanyarên ku tevlî çêkirina wê benzînê bûye, Stephen Volker. Volker diyar kir ku ji bo bikaranîna vê benzînê ne hewce ye depoya otomobîlan bê gubertin û got; "Ew benzîn ji ber hîdrojena di nav de, piştî şewitînê wekî helim û av belav dibe û hemû otomobîl dikarin wê bikarbînin."*

**Şêwirmendê Serokê Hikûmetê yê karûbarên kiştûkal û asayîşa zad, Dr. Talib Mûrad:**

# Ji bo vî welatî asayîşa zad ji ya netewî girîngtir e



Wêne: Rûdaw
Bazarekî kelûpelên xwarinê li paytextê Başûrê Kurdistanê, Hewlêr

▶Divê ji sedî 10'ê bûdçeyê ji bo çandinê bê veqetandin, Kurdistanê ji sedî 2 daniye

▶Ti welatek li cîhanê nîne ji sedî 95'ê zadê ji derve bîne, ji derveyî Îraq û Kurdistanê

▶Tevayî hilberîna Kurdistanê 13 milyar dolar e û beşa çandinê ji sedî 1'ê kêmtir e

**Hewlêr (Rûdaw) -** Şêwirmendê Serokê Hikûmeta Herêma Kurdistanê yê ji bo Karûbarên Çandin û Asayîşa Zadê, Dr. Talib Mûrad nêzî 35 salan di rêxistina Neteweyên Yekbûyî de kar kiriye û ev 2 sale xanenişîn bûye. Mûrad ne ji rewşa çandin a Kurdistanê raziye û ne ji asayîşa zadê û dibêje: "Ji sedî 95'ê xwarinên me ji derve tê. Asayîşa xwarinê ya Afxanîstanê ya di serdema Talîbanan de ji sedî 100 bû!"

Dr. Talib Mûrad rewşa Herêma Kurdistanê di warê asayîşa zad û selametiya zad, di rûyê plan û siyaseta çandin bi "Karesat" dibîne û dibêje, "Çiqas diçe xirabtir dibe." Lê li gel vê yekê jî bi baweriya wî çareserî heye; "Lê çareserî tehl e û nayê pejirandin. Ez dibêjim 'Ji bo tu dilovan bî, divê tu dijwar bî."

**Ev pilan nagihî sala 2011'an**

Talib Mûrad Kurdek Feyliye û birayê wî yê mezin Adil Mûrad yek ji damezirînerên Yekitiya Nîştimanî Kurdistan e, lê saleke ew wekî şêwirmendê Serokê Hikûmetê kar dike. Bi berdewamî di gotinên xwe de hevokekê dubare dike; "Ji bo vî welatî asayîşa zad ji ya netewî girîngtir e."

Em derbarê plana stratejî ya sektora çandinê a yekemîn şikestina hikûmetê jê pirs dikin. Plan li ser masa wî ye û bilez destê xwe davêjê; "Cara yekem dema ez hatim, min ev plan dît û birê 10 milyar dolar jêre bir yar li ser hatibû dayîn. Ez bûm mîratgirê vê plana ji bo 5 salan, ji 2009'an dest pê dike heta 2013'an. Lê niha me nagihêne 2011'an, rojnameyan jî nivîsandine tenê ji sedî 14'ê wê planê hatiye bicihkirin."

**Pirsgirêka herî mezin a kiştûkalê budçe ye**

Di dema ezmûna deshilatdariya Kurdî de cara yekemîn bû Hikûmeta Herêma Kurdistanê baweriyê bide giringiya planê. Dr. Talib di şikestinê de xwe bi berpirs nabîne; "Ez li vê derê tenê şêwirmend im û ji bicihkirinê ne berpirs im. Ya girêdayî min peyama xwe bigihînim û bêjim, ev baş e û ev xirab e. Ew jî hinek caran gûhdariya gotinên min dikin û hinek caran jî nakin."

Li Kurdistanê probelema herî mezin a li pêşiya sektora çandinê, bûdçe ye. Pêwîst bû ji bo ev plana 5 salî salane pere jê re bihata veqetandin. Li gor gotina Wezareta Çandin bi xwe, wan ji 200 milyon dolar zêdetir ti tiştek din wernegirtine.

"Eger em temaşeyî plana 4 salên vê dawiyê yên li Kurdistanê bikin, hilberîn nêzî 13 milyar dolar bû. Hinek pereyên karsazên Kurd e û hinek jî yê karsazên biyanî ne. Herwiha hinek jî hilberîna hevpare. Tevayî projeyên hilberînê nêzî 300 proje ne û beşa çandinê ya ji vê yekê jî ji sedî 1'e."

**Îmtiyazek zêdetir pêvîst e**

Dr. Talib Mûrad dide zanîn ku karsazên Kurd û biyanî li pey qezenca lez in, ji ber vê yekê li cihê çandinê diçin apartimanan ava dikin û hîna proje li ser nexşê ye hemûyan difiroşin. Lê eger baxçeyek ê zeytûnê biçinîn, divê 4 salan li bendê bê rawestandin ku heta berhem bide. Ji ber vê yekê Dr. Talib Mûrad çareseriya vê pirsgirêkê; "Jiber ve divê hilberîna ji sektora çandin ji hilberînên din bê cûdakirin û îmtiyazek zêdetir bê dayîn." Di vê derbarê de Ewrûpa wek mînak nîşan dide; "Bazara Ewrûpa ya hevbeş ji 26 dewletan pêktê û hemû jî dewletên pîşesaziyê ne. Lê ji sedî 50'ê budçeya wê ji bo piştgiriya çandinê tê veqetandin. Me di sala 2008'an de ji bo çandinê nêzî 56 milyar dolar veqetandibû."

**Li gor Dr. Talib Mûrad pirsgirêka herî mezin a di pêşiya sektora çandinê de budçe ye. Lê dibêje Hikûmeta Kurdistanê budçeyek kêm ji bo çandinê tê vediqetîne.**


Wêne: Rûdaw

**Divê Komîteya Asayîşa Zad bê damezirandin. Bila Serokê Hikûmetê serokatiya wê bike, lê endamên wê teknîkî bin, bikaribin bifikirin û biaxifin. Divê çi tişta têkilî bi zad re hebe di bin kontrola wan de be.**

**Kurdistan biryarên kongreya zad a cîhanê binpê dike**

Şêwirmendê Serokê Hikûmetê li ser komîteya çandin a di nava parlementoyê de xwedî gotinê ye; "Li vê derê li parlementoya li kêleka min komîteyek a kiştûkal heye. Ev saleke ez li vê derê me û min kes nedîtiye."

Dr. Talib Mûrad tê ser bûdçeya Wezareta Çandin a ku sala borî ji bûdçeya Herêma Kurdistanê tenê 250 milyon dolar jêre hatî veqetandin (Li gor plana stratejî pêwîst bû ew bûdçe 560.173.00 dolar bûna.) Talib Mûrad biryarên girîng ên Kongreya Cîhanê ya Zadê ku cotmeha borî li Roma hat sazkirin û li ser navê Îraqê Wezîrê Çavkaniyên Avê Dr. Letîf Reşîd tevlî bû. Dibêje; "Kongreyê biryar da ku divê hemû welatên cîhana sêyem salane ji sedî 5-10'ê bûdçeya xwe ji bo çandinê veqetînin. Niha li gel me ew bûdçeya ji bo Wezareta Çandinê hatiye veqetandin ji sedî 2'ê bûdçeyê kêmtir e."

Dr. Talib daxwazê ji parlementoya Kurdistanê dike ku di dema guftûgoyên li ser bûdçeya sala 2011'an de daxwaza zêdekirina bûdçeya Wezareta Çandinê bikin; "Ji ber ti welatek li cîhanê nîne ji sedî 95'ê zadê ji derve bîne, ji derveyî Îraq û Kurdistanê. Ev rewşek gelek metirsîdar e. Îranê heta sala 1993'an zad ji derve dikirî, lê niha zad difiroşe derve. Urdûn sala derbazbûyî bihayê 1 milyar dolar zad firotiye derve, ev zad Îraqê kiriye."

**Komîteya Asayîşa Zadê**

Şêwirmendê Serokê Hikûmetê ji asayîşa zad tê ser baskê selametiya zad. Dr. Talib Mûrad danîna komîteyek bi navê Komîteya Asayîşa Zad bi giring dibîne û dibêje: "Bila Serokê Hikûmetê bi xwe serokatiya wê bike, lê endamên wê teknîkî bin, bikarin bifikirin û biaxivin. Divê çi tişta têkilî bi asayîşa zad ve hebe, di bin kontrola vê komîteyê de be û ew pêşniyara çareseriyan bikin. Niha ji bo parastina asayîşê dam û dezgehên mezin hene û pêwîst bû komîteyek ji bo asayîşa zadê jî hebûya."

# Tîma serkeftî, lê bê qelevan û bê sponsor

▶FC Kurdistan derbasî lîga jor nabe: Mesrefê wan zêde dibin û sponsor jî tune

▶Du salên pêşî bê forme leyîstin, niha formeya wan heye.



Wêne: Rûdaw

**Necatî Çelik (li piya, yekem) û Atilla Aydemir (rûniştî, yekem) bi lîstikvanên FC Kurdistan re**

**Hagen (Rûdaw)-** Tîma futbolê ya Kurdên li derdora bajarê Hagenê, FC Kurdistan di sezona 2009/2010'an de ji Kreislîga C, derbasê Kreisliga B bû. Tîma ku niha bê qelevan dilîze, di tabelleyê de di rêza çaremîn de cîh digire û derbasbûna lîgeke jor îsal nade ber xwe, ji ber ku wê gelek mesrefên wan çêbibin û wek Serokê Tîmê Atilla Aydemîr dibêje, "Heta ku sponsorên me tune bin em ê çawa karibin ji binî mesrefan derkevin?"

Ew her hefte beriya ku herin antrenmanê, li Mala Kurdan a Hagenê dicivin, pêwîst be civînên xwe li dar dixin û bi otomobîlên xwe diçin cihê ku ji bo wan hatiye qetandin û dest bi antrenmanê dikin. Nezîkê 30 lîstikvanên wan ê amator hene; di nava wan de yek Alman, yek Ereb û yek jî Îndû heye. Ligel hejmareke zêde ya lîstikvanan ji serê sezonê heta niha qelavanê FC Kurdistan tune ye. Serokê FC Kurdistan Atilla Aydemir ku bi xwe jî formaya timê li xwe dike, dibêje ku di her maçan de lîstikvanekî wan dikeve qelayê. Niha ew di Kreislîga B de di rêza çaremîn de cîh digirin û 23 pûanên wan heye. Aydemîr dibêje, "Me 47 gol avêtine û ligel ku qelevanê me tune, me tenê 26 gol xwariye. Eger qelevan hebûya me nîva van golan jî nedixwar!"

### Sponsor ji navê wan ditirsin

FC Kurdistan ji ber navê xwe gelek bal dikişîne. Ew dixwazin navê Kurdistan di saheyên fûtbolê de belav bikin û bikin wek markeyekî, lê pêwîstiya wan ji roja damezirandinê (2008) heta îro bi sponsoran heye. Aydemir dide zanîn ku ji bilî Mala Kurdan û Mizgefta Şêx Mehmûd Emîn a li Hagenê ti sazî, fîrma û kesayetê heta niha alîkarî nedane wan. Aydemîr û Berdevkê tîmê Necatî Çelîk di wê baweriyê de ne ku sedemê tunebûna sponsoran navê wan e: "Ditirsin ku navê fîrmaya wan ligel navê Kurdistanê bê dîtin." Ji ber vê yekê FC Kurdistan du salên pêşî bê formeya xwe ya taybet maç leyîstiye. "Lê niha formeya me heye," Necatî Çelik dibêje. Ew jî fîrmeya birayê Atilla Aydemir alîkarî da wan.

### Tîma Tirk têkbirin

Di dema raporta Rûdawê ya sala borî de FC Kurdistan dixwest ku bi tîmekî Tirk re bileyîze û biserkeve. Lê di Kreisliga C de tîmên Tirk tune bûn: "Me îsal di saheya wan de bi Tîma Hilal re leyîst û me ew 5-0 têkbir." Aydemîr wiha pêde diçe: "Piştî ku me ew têkbirin, lîstikvanekî wan aciz bû û got navê welatê we di nexşeyê de tune! Paşê antrenorê wan ew rawestand û got ew di fûtbolê de biserketin, divê em rêzê nîşane wan bidin."

Eger FC Kurdistan hewl bidin xwe dikarin bibin duyemîn û di maçên relagasyonê de derbasê lîga jor bidin. Lê ji ber ku sponsorê wan tune û mesrefên wan wê zêde bibin, derbasbûna lîga jor nadin ber çavên xwe.

# Hewlêrê rûyê Îraqê sipî kir

**Dîdar Heyder**

Piraniya lîstikvanên navnetewî yên kûpaya tenîsa sermaseyê dema ku dawetname ji aliyê Iraqê wergirtibûn, pêşî red kirin, lê dema behsa rewşa aştiyane û aram a Kurdistanê ji wan re kiribûn, beşek ji taximan razî bûn bên Kurdistanê.

Hefteya borî Navenda Blue li Hewlêrê bi mêvandarîkirina Şampiyoniya Kûpaya Cîhanê ya Tenîsa Sermaseyê, organîzasyona navnetewî girt ser milê xwe.




Şampiyoniya Tenîsa Sermaseyê ya Cîhanê ya li Kurdistanê bi beşdariya taximên Swêd, Sûriye, Îran, Iraq, Urdun, Lubnan, Misr û Porto Ricco, bi dirêjiya 5 rojan dom kir.

Lîstikvana Swêdî Lîna Verîsto ku pileya yekem a temenbiçûkên şampiyoniya tenîsa sermaseyê ya cîhanê bidestxist ji Rûdawê re ragehand: "Wek lîstikvaneke 14 salî pir ditirsiyam bêm welatekî wek Iraqê, lê niha dizanim ku di hemû aliyan de cudahiyeke Kurdistanê heye." Lewra Lîna ne poşman e ji vê hatina xwe û dibêje: "Heta nehatim Kurdistanê, min nedizanî li kêleka van teqîn û komkujiyên zêde, herêmeke xweşik, aştiyane û aram li Iraqê heye."

Rahênerê taximê Sûriyê Şîkrat Eslan, tevî ku cara yekem e di qehremaniyeke wisa mezin de beşdar dibe û encameke baş jî bidestve neanîbû, lê kêfxweş bû ku Kurdistan gihiştiye asta ku bikare organîzasyoneke mezin a bi vî rengî birêve bibe. "Ev cara yekem e ez têm vê herêmê, min serdana piraniya navçeyên Kurdistanê kir. Em serbilind in ku me xwe di nav van kesên pak û dilsoz de dît."

Berpirsên werzişa Iraqê tekez dikin ku eger ne Herêma Kurdistanê bûya, wan nedikarî vê organîzasyonê bikin. Serokê Yekîtiya Tenîsa Sermaseyê ya Iraqê Kazim Xezelî got: "Eger ne bi piştgirî û hevkariya Kurdistanê û bi taybetî ya Hewlêrê bûya, me qet nedikarî organizasyoneke bi vî rengî bînin Iraqê. Me li ser baweriya Hewlêrê mêvandariya Ewrûpa, Asya û Efrîqa kir. Tê çaverêkirin di qehremaniya bê de zêdeyî 15 taximan serdana Hewlêrê bikin "

Lîstikvana taximê Îranê Melîka Xundî ku di 3 lîstikan de beşdar bûbû û tenê li himber Swêdê wenda kiribû, got: "Min berê Kurdistan dîtibû, lê niha ji berê xweşiktir û pêşkeftîtir e, hêvîdar im her sal li Hewlêrê bê sazkirin."

### Prof. Dr. Zelmî diyar dike ku ew diyarde nexweşiyan bi xwe re tîne:

# Ne li Mekke, lê li Kurdistanê sinetkirina keç û jinan heye

▶Di encama anketekê de derket holê ku li Duhokê sinetkirina jinan tune û li Silêmanî ji Hewlêrê zêdetir e.

▶Serokê Sendîkaya Pizîşkên Kurdistanê: Bila pizîşkên pispor li ser vê mijarê biaxivin.


Jinek keça xwe dibe sinetkirinê

Soran Behaedîn Hewlêr

Pisporê şerîetê Dr. Mistefa Zelmî pirtûka xwe ya bi navê "Sinetkirina Jinan, Zererên Wê û Heramkirina Di Quranê de" bi zimanê erebî belav kiriye û tê de fitwaya heramkirina sinetkirina keçan daye, Dr. Mistefa Zelmî ji bo Rûdawê got: "Li Mekke û Medîne sinetkirina keçan nîne û Kurdistanê jî Misilmantî ji wan wergirtiye. Gelo çima sinetkirin li Kurdistanê heye?!" Li gelek welatan sinetkirina mêyîne heye û bi taybet jî li welatên parzemîna Afrîka. Ji derveyî Kurdistanê li Îraqê sinetkirina mêyîne nîne, herwiha li welatên wekî; Erebistan Siûdî, Sûriye, Libnan û Tunûsê jî sinetirina mêyîne nîne.

### Yekîtiya Zanayên Olê piştgiriyê dide qedexekirina sinetkirinê

Wezareta Tendirustiya Hikûmeta Herêma Kurdistanê roja 28'î Kanûna 2010'an bi alîkariya "Platforma Na Ji Bo Têkdana Endama Mêyîne Ya Zayindeyê" anketek eşkere kir. Di encamê de derdikeve holê ku li Duhokê kesên beşdarbûyîn, kes ji wan nehatibûn sinekirin. Li Silêmanî rêjeya sinetkirinê ji Hewlêrê zêdetir bû.

Prof. Dr. Mistefa Zelmî li ser asta cîhana Îslamî yek ji zanayên navdarên şerîetê ye, ew di pirtûka xwe ya nû de dibêje ku bi sedema sinetkirinê gelek nexweşî peyda dibin; kêmbûna karîna zarokbûnê û dibe ku (Jina zarokan naîne), di dema cûtbûnê de peydabûna êşek zêde û zêdebûna mirina dayikê di dema zarokbûnê de, jin di dema mehane de rastî gelek êşan tên, kulbûna mîzdanê û ranewestana mîz, herwiha rastî gelek nexweşiyên din ên gewdeyî û tendirustî tê.

Dr. Mistefa Zelmî bi pêwîst dibîne ku li gor yasayê ew fenomena li hinek navçeyên Kurdistanê zêde, bê qedexekirin: "Di Qûran a pîroz de ev tiştane hatine heramkirin. Ti hedîsek rast li ser dirustiya sinetkirina mêyîne nîne."

Porf. Dr. Mistefa Zelmî behsa wê yekê kir ku di pirtûka xwe de îsbat dike ku sinetkirin herame: "Sinetkirina mêyîne tenê li Kurdistanê heye, erê çima di nav Ereban de nîne?! Ma ew ne Misilman in? Li Mekke û Medîne nîne.

Komîteya Bilind a Fitwaya Yekîtiya Zanayên Ayîna Îslamê yên Kurdistanê roja 7'î Hezîrana 2010'an, derbarê sinetkirina mêyîne fitwayek derxist. Endamê komîteyê Mele Ehmed Şafiî derbarê sinetkirinê got: "Me gotiye sinetkirina mêyîne di Îslamê de nehatiye danîn û bi ti awayî Quran a pîroz jî balê nakêşe ser sinetkirina keçan. Pêximber (S.a.s) keçên xwe sinet nekirine. Ji ber vê yekê me gotiye xetenekirin ne erk û sinete, lê me negotiye herame."

### Divê pizîşk zererên sinetkirinê destnîşan bikin

Niha Mele Ehmed Şafiî piştgiriyê dide fitwaya Dr. Mistefa Zelmî, lê dibêje; ew wekî Komîteya Fitwayê sinetkirina jinan heram nakin, ji ber ku hin pizîşkên pispor bi xirabî nabînin: "Eger pizîşk bûn yek deng û îsbatkirin ku sinetkirinê ziyanek tendirustî heye, em ê fitwa heramkirinê bidin. Li gor hedîsên pêximber (S.a.s) çi tişta ku derket holê zerera wê heye, tu dikarî qedexe bikî."

**Mistefa Zelmî dibêje li gor Quranê sinetkirina mêyîne heram e û dixwaze li Kurdistanê bê qedexekirin.**

Piştî belavbûna pirtûka Dr. Mistefa Zelmî, dibe ku gelek rexne li wê pirtûkê bên girtin, ji ber ku di nav de fitwaya heramkirinê heye, lê Dr. Mistefa Zelmî dibêje: "Ma tenê gelê Kurdistanê Misilman e? Başe li Mekke û Medîne sinetkirin nîne, erê ma olê me ne ji Mekke û Medîne hatiye?"

Berpirsê Navenda Pird a lêkolînan, Ebdulreham Sedîq di gotarekê de ku di hêjmara 141 a rojnameya Rûdaw de belav bûye, di wê baweriyê de ye sinetkirina keçna ne şerîet û fiqhî ye; "Sinetkirina keçan yek ji kevneşopiyên xirab ên civaka Kurdî ye."

Dema Dr. Mihemed Gezneyî li rêvebiriya Silêmanî wezîrê ewqaf bû, berê lêkolînek derbarê sinetkirina mêyîne de kiribû. Gezneyî ji Rûdawê re got: "Min ti tekstek nedîtiye ku sinetkirina keçan heram bike, tenê dibêjin; ne erke. Pêşeng dibêjin bi keyfa xelkê ye."

### Rola polîsan di nehêştina sinetkirinê de

Gezneyî jî wî karî ji pizîşkan re dihêle û dibêje: "Eger pizîşkan gotin, zererê digihîne, wê bê heramkirin. Berevajî rê jê re hatiye dayîn û çêdibe." Bi nerîna Dr. Mihemed Gezneyî çend pîrejin hene wî karî dikin, "Eger polîs wan haydar bikin, êdî newêrin bikin."

Serokê Sendîkaya Pizîşkên Kurdistanê Dr. Hadî Neqşebendî, ji Rûdawê re diyar kir ku ew ê di civîna bê ya sendîkaya wan de, mijara sinetkirinê bêxin rojevê ku civînek taybet li ser bê kirin; "Bi baweriya me başe ku pizîşkên pispor li ser vê mijarê biaxivin."

Serokê Yekîtiya Zanayên Ola Îslamî Mele Ebdullah Mele Seîd, piştgiriyê li gotinên Zelmî dike: "Em piştgiriyê didin gotinên Zelmî, em rêz ji karîn û zanista wî re digirin. Me berê jî diyar kiriye ku em piştgiriyê didin derxistina yasayek ku rê li sinetkirina mêyîne bigre."

"Ya nehatibe sinetkirin nanê destê wê herame." Ev gotin li hinek navçeyên Kurdistanê gotinek diyare û bûye behaneya sinetkirina keçan, lê Zelmî vê gotinê bi "Efsane" wesif dike û daxwaz dike ku parlemento li gor yasayê qedexe bike; "Min pirtûka xwe ji bo Serokê Herêmê, Serokwezîrtî û Parlementoya Kurdistanê şandiye ku sinetkirinê qedexe bikin."

## Tendirustî

### Paqijkirina diran


Dr. Ehssan Nebîzadeh*

Diran endamê bedena mirov a herî giring û hasas e, pêwistiya diran bi paqijkirin û xwedîkirinê heye. Bêguman kesên li diranê xwe miqate bin jiyana wan bê êşa diran didome û ji hêla diran ve dibin xwedî tendirustiyeke baş û bi qalîte.

**Divê diran çawa û kengî bên firçekirin?**

**Dr. Ehssan Nebîzadeh:** Bi rastî ev mijareke gelek girîng e, ji ber gelek mirov bi mabesta ku li diranê xwe miqate dibin, ew zirarê didin diranê xwe. Niha du şêweyê paqijkirina diran ango firçekirina diran derdikevin pêşberî me. Yek bi rastî firçekirina diran e û ya din jî bi navê paqijkirinê zirardana diran e. Wextê ku mirov xwarinê dixwe ew bermayin xwe dixin navbera diranan û bi rêya wan bakteriyê nagativ êrîş dibin ser diran, ji ber wê jî em dibêjin her tim piştî xwarinê divê diran pir baş bên firçekirin. Hinek kes havîrê (macun) diran didanin ser firçeya xwe û 5-6 saniya tenê firçê di devê xwe de dibin û tînin; dema wisa bikin herî baş ew e ku diranê xwe qet paqij nekin. Ji ber ku ev zirarek gelek xirab e ji diranê wan re. Tişta herî baş ew e ku havîrê diran divê di dev de bibe wek dew û bi awayekî nerm herî kêm 2 deqeya diran bên firçekirin û ew macuna buyî wek dew di dev de çend saniya dîsa di devê xwe de werdin û piştre karin birêjin. Kesê ku nexwaze dikare biqurtinin jî, ew qet zirarê nade mirov, lê wextê birêjin jî bila dîsa pir av li devê xwe wernedin.



**Giringiya pidu ji bo diran çi ye?**

Têkiliya pidu û diran, bêgunam wek têkiliya neynûk û goşt e, ji ber ku pidu diran diparêze. Ji ber wê jî em dibêjin her roj an jî du rojan carekê divê ku piduyî bi firçeya diran hêdî hêdî bê mizdan; ji ber ku dema em dinêrin hemû rayê xwînê ji wir tên. Ew mizdan jî alîkariyeke girîng e. Gelek pirsgirêk ji piduyê diran jî çêdibin, ji bo ku rayê diran nexitimin ev rêbaz jî pir baş e. Wextê ku li piduyê jî neyê miqatekirin hingê problema herî mezin dibe sedema paradont; paradont jî piduya xirab dike.

**Amadekirin: Zelal Çelîk**

***Dr. Ehssan Nebîzadeh:*** *ji Rojhilatê Kurdistanê ye û li Belçika bizîşkê dirana ye.*

Pirsek we ya taybet heye?

Ji pizîşkên me bipirse: info@rudaw.eu



# Enfalkirina Kurdan ne 'werîsê' Xweda ye!

**Hekîm Kakeweys**

Haris Zarî... Çiqasî resen û rastbêj e ev melayê şoven ê Ereb! Çiqasî bêminet û vekirî diaxive ev neyar! Çiqasî bi awayekî merd ayet û hedîsan dixe xizmeta şovenîstiya Erebî ev Beisî! Oleke navneteweyî ya cihgirtî wek Misilmantiyê xistiye xizmeta şovenîzima xwe û bê şerm dagîrkirina xaka Kurdan rewa û helal dike. Çima Misilmantî kirine kêra qesaban bo hûrkirin û perçiqandina gelê Kurd? Çima melayekî Kurd xîret nake `werîsê` Xweda bi awayekî din şirove bike û wê egala serê Zarî wek werîsa darvekirina Kurdan binav nake?

Mela Zarî, Kurdên ku daxwaza azadiya neteweya xwe dikin, wek kafir û bê ol binav dike. Îslamiyekî Beisî ye Mela Zarî û binpêkirina gelê Kurd wek zilmekê nabîne! Ew cesaret nake ji Tirkan re bêje: Eger hûn nekevin bin rikêva Ereban, hûn dibin kafir. Nikare ji Efgan, Pakistanî, Fars, Moxûl, Tatar û ti gel û melekî din re bêje, lê bi awayekî vekirî ji Kurdan re dibêje û Kurd mat dibin. Kurd, ku mela û siyasetvan zimanhalên wan in, himber Mela Zarî û yên wek wî nerm û destgirtî ne, lê li himber lawên gelê Kurd şêrên êrîşker û conegayên mezin û bi qiloç in. Şêrko Bêkes ji rê derketî ye, Ebdulla Peşêw kafir dike, Celîzadeyê helbestvan sivikatî bi Xweda kiriye.. Filan nivîskar û bêvan hunermend bê ol in! Hey aferîn melayên Kurd! Lê çima hûn jî himber Zarî jî fetwayan nadin ku we Zarî wek bê ol wesif dikir? Erkê we ne berevanîkirina Kurdan, lê tûjkirina kêrê ji neyarên gelê Kurd re ye! Mela Zarî sivikatiyê bi Kurdan dike. Kesekî ku rêza xwe û gelê xwe bigre, bêrêziyê ji Beisiyekî wek Zarî qebûl nake, lê eger bi xwe genî bin û mela û berpirsên Kurdan Beisî bin, em ê hingî çi bêjin?!

Haris Zarî di rûpelê 8'an di hejmara 148'an a Rûdawê de dibêje: Li gor ayet û hedîsan, her Kurdekî ku daxwaza cudabûnê ji Iraqê bike, kafir û bê ol e. Belgeya wî jî ayeteke Quranê ye ku tê wateya `hûn hemû xwe bi `werîsê` Xwedê bigrin û cuda nebin`. Enfalkirina Kurdan girtina bi wê `werîsê` ye yan veqetîn e? Kîmyabarana Kurdan, dagîrkirin û Erebkirin û firotina jinên Kurd, girtina bi wê `werîsê` ye yan veqetîn e? Rast e cihê koletiyê di Misilmantiyê de heye, lê mafê koleyan jî parastî ne. Lê ev melayê şoven mafê koleyan jî ji Kurdan re rewa nabîne. Cudabûna ji Iraqa minafiqî û dûrûtiyê kafirbûnê bi xwe re tîne? Êdî çima kesên ku ne Iraqî ne, kafir nabin? Iraqîbûn û girêdanan bi Iraqê ve `werîsê` Xwedê ye hey melayo?

> **Mele Zarî Kurdên ku daxwaza azadiya netewa xwe dikin wek kafir û bê ol binav dike. Lê binpêkirina Kurdan wek zilmekî nabîne.**

Min destê xwe jê şûştiye ku kesekî Ereb, mele be yan firîşte be, bigihe astekê ku li mafên Kurdan mikur bê, lê bê helwêstiya melayên Kurd jî nayê bawerkirin. Nayê bawerkirin siyasetvanên Kurd qasî şêx Zarî bi nizimî berê xwe bidin neteweya xwe. Nayê bawerkirin melayên me li ser helbestekê di mizgevtan de dinyayê bi serê Kurdan de xerab bikin û xelkê dehif bidin kuştina helbestvan, hunermend, serqot û paqrûtan. Lê derheqê şovenîstekî wisa de ku bi neheqî Misilmantiyê dijî gelê Kurd bikar tîne ker û lal bimînin. Bi baweriya min eger Zarî gotinên wisa dijî Tirkan bike, wê melayên Tirk `bavê wî bişewitînin`.

Mela Zarî di heman rûpel û hejmara Rûdawê de derewan dike û dibêje: "Brîtanya jî ji salên 20'an û heta niha hewl dide Iraqê parçe bike da ku bibe çend dewletokek...htd." Derewîn neyarê Xweda ye. De mamosteyên birêz! Da ku nimêja li pişt we rewa bibînim, bersiva derew û neheqiyan bidin! Ingilîzan Iraq çêkir an hewl dan wê parçe bikin? Wîlayeta Mûsil bi Bexdayê ve zeliqî bû yan Ingilîzan pêve kir?!

Ji dil lavijan bo Xweda dikim berî ku me ji neyar û dagîrkerên me biparêze, ji melayên me û ji siyasetvanên me û ji rewşenbîrên me biparêze! Berî me dûrî şerê Mela Zarî bike, me ji fen û fûtên Ibn Siûd El-Îmadî ku fetwaya qirkirina Êzdiyan da û Îdrîsê Bedlîsî yê ku bû sedemê yekem parçekirina Kurdistanê, biparêze. Bila Xweda me ji Saddam neparêze, lê ji siyasetvanekî ku bo derbasbûna ji koletiya xwe, neteweya xwe ji koleyan nizimtir dike, biparêze! Xweda me ji mejiyê me biparêze ku koletî, nizimbûn û dûviktiyê hêjayî xwe dibînin!

Tu dibêjî ew Qurana mezin û ew ola bêrî têra parastina rûmeta Kurdan nake, yan herdû çavkaniya koletiya Kurdane? Ez vê pirsiyarê ji melayan dikim, nemaze ewên gihiştine parlamento û bûne milyonêrên sextekar. Misilmantî ne koletî ye û şêx Zarî ne pira siratê ye.

Melayê ku van sivikatiyan qebûl bike, ne mela ye lê canbazê meydana firotina Kurdan e. Serkirdeyê siyasî yê ku van sivikatiyan qebûl bike ne serkirde ye, lê qumarçî û sextekar e!

Misilmantî faktorek bû ku Ereb ên rûniştvanên biyabanan û paşketî dû împeratoriyên mezin têk bidin, lê melayên me Misilmantî kirine sedemê bindestiya neteweya me û kes nizane kengî ji xew radibin, eger Xwedê bike ji xew rabin! Misilmantî sedem bû bo mayîna Farsan himber lehiya Ereban. Misilmantî faktorek bû ku Tirk bi sedan salan li ser sê kişweran serdest bin û bibin mezinên Ereban jî. Lê melayên Kurd herdem li dor koletî û dûviktiya Kurdan de dizivirin û îmamên siyasetvanan in jî! Belê bigre ew ji siyasetvanan jî gunehbartir in! Partiyên me, yên desthilatdar û opozîsyonê, melayên me yên hizbî û serbixwe, rewşenbîrên me yên çep û rast, bi mijareke din ve mijûl in loma Mela Zarî dest û zendên xwe badide! Bawer dikim wextê şiyarbûna me hatiye û cênabe egala –serpêçka` Mela Zarî wek `werîsê` Xwedê bibînin, lê divê em wê mîna werîsê darvekirina Kurdan bibînin. Çênabe xayînê herdemî be û her divê bê riswa kirin û ew roj jî her wê bê... îro yan sibe!



# Gûherîn û kevneşopî

**Chris Bowers***

Dema ez ji konsûlxaneya me ya li kenarê bajarê Hewlêr, diçim navenda bajêr, ez bi gûhertinên lezûbez ecêbmayî dimînim. Berî 10 salan Hewlêr û piraniya cihên Herêma Kurdistanê nayên naskirin. Hinek caran hinek kes dikarin heftane guhertinan bibînin. Tenê çiya wekî xwe mane û ev jî tiştek gelek baş e.

Ev jî wisa derdikeve holê ku li Kurdistanê enerjiyek veşartî heye. Li gel wê yekê ku zêdetirî 20 sal e hatiye paşgûh xistin, lê di rabûn û pêşveçûnê de ye. Ji bo yên wekî me ku ev demeke ji dûr ve temaşeyî Kurdistanê dikin, cihê keyfxweşiyê ye ji nêz ve vê proseyê bibînin û ev herêm, "Ber bi nûjenbûnek lez ve diçe."

Ji bo min vebûna bi vî awayî û bi heyecan di nava hikûmet, civak û kesên asayî de bi armanca têkelbûna li gel cîhana ji derve heye. Ez vê yekê rojane di rûyê xwendevanên ku li pêşiya ofîsa me li benda vîzeyan dimînin û ji bo bikarin li Birîtanya wekî beşek ji bernameya karîna mirovî ya serokwezîran heye, dibînim. Em bi wê yekê gelek keyfxweş in ku gelek xwendekaran Birîtanya hilbijartine. Em kêfxweş in û di heman demê de jî cihê serbilindiyê ye. Em ê ji aliyê xwe ve ji bo proseya wergirtina asankirina vîzeyan, hemû karînên xwe bikarbînin.

Bêgûman ciwan dixwazin biçin geştê û cîhanê bibînin, lê piraniya xwendevanên min dîtî, ez xalek din jî di wan de dibînim. Ew jî fikra nû, awayê nû yê û dixwazin ya li Birîtanya fêr bibin, ji bo Kurdistanê bênin.

> **Ev gel ji kevneşopiyên xwe hez dike, lê hinek kevneşopî hene divê cihê wan di Kurdistana nû de tunebe.**

Herwiha em dixwazin di warê perwerdê de bibin hevbeşê Kurdistan a Îraqê; ji ber vê yekê ev ji bo Birîtanya û Kurdistanê şans e.

Guhertin û fikirîna nû baş e. Lê qet ne proseyek asan e. Hestek bihêz li cem min heye ku Kurdistan dixwaze ber bi kîderê ve biçe. Ew jî; civakek nûjen û vekirî, ji wê aliyê din ê sinor rêz lê bê girtine. Lê erê ev tişt çi ne ku dixwaze bi cih bihêle û jê dûr bikeve?

Bersivek sade ya ji bo vê pirsê, kevneşopî ye. Lê ev jî ne ewqas sade ye. Ev gel ji kevneşopiyên xwe gelek hez dike. Ez vê yekê di roja newrozê de dibînim, di xwedî derketin û bi taybet jî di mûzîkê de.

Lê hinek kevneşopî hene ku divê cihê wan di civaka pêşketî û nûjen a Kurdistanê de nebe. Wekî praktîzeya ku yek ji endamên malbata xwe bikûje û ango "Kûştina şerefê" yan jî ew kevneşopiya ku bi awayekê mamele li gel jinê bikî û ji mêr lewaztir e. Yan jî ew kevneşopiya ku nabe bi ti awayî Kurd mamele li gel Bexda bikin. Ev di serdema Saddam de tiştekî gûncaw bû, lê niha di cih de maye. Di rastiya xwe de di çend mehên derbazbûyî de Hewlêr di nêzîkbûna siyasetmedarên Îraqê de rolekî girîng leyîst.

Pêwîstiya van gûhertinan bi rêkevtinan heye. Hinek di wê baweriyê de ne pêwîst e zûtir bên kirin û bi nêrîna hinekên din jî pêwîst e bi xavî bên kirin. Lê ya cihê keyfxweşiyê ew e ku tê dîtin Kurd di nava xwe de bi azad guftûgoyan li ser vê meseleyê dikin.

Hinek caran xelk ji min dipirsin, çima li vê derê karê bazirganî yê Birîtanya nayê dîtin? Di rastiya xwe de karê bazirganî yê Birîtanya gelek zêde ye, ez hêvîdar im ku di gotarên xwe yên bê de bersiva van pirsan bidim. Heman tiştê ji wan xwendekarên diçin Birîtanya çaverê dikim û bi fikrên nû vegerin û "Çawa gûhertin" tên kirin.

**Chris Bowers niha li Hewlêr konsûlê giştî yê Birîtanya ye. Berê demekê li BBC karê rojnamevaniyê kiriye.*




# Amed dixwaze bibe lîstikvanê fûtbolê

Amed 9 salî ye. Amed li Swêdê ji dayîk bûye, lê niha li bajarê Almanya Dortmundê dijî. Gelo Amed ji ku dera Kurdistanê ye? Ji Amedê? Nexêr, bavê Amed ji Mêrdînê û dayîka wî jî ji Mûşê ye. Amed diçe polê 3'em em dibistanê û du xewnên Amed hene: Dixwaze bibe lîstikvanekî fûtbolê û şoferê taksiyê jî. Lê dema ku Amed bibe lîstikvanekî fûtbolê yê navdar, wê demê belkî pêwîstiya Amed nemîne ku bibe şoferê taksiyê, wê demê belkî şoferekî wê yê taybet hebe.

# Roj çiqasî ji me dûr e?



Dunya li ser hêla xwe li dora rojê dizîvire. Di zîvira xwe de carnan nêzîkî rojê dibe û carnan jî dûr dikeve. Dunya jî derdora 150 milyon Kîlometran ji rojê dûr e. Tu dizanî çiqas dem derbas dibe, heta ku tîrêjên rojê dighijin me: Tam 8 xulekan, yanî 8 cara 60 çîrkeyan. Ger ku roketek bi leziya 1000 kîlometre di saetêkê de bifire, ev roket wê di 17 salan de bighije rojê.

Tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî?
Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

# Elî li Spanyayê lîstikvanê herî baş e



Xortê Kurd Elî Şadman li Spanyayê xelata lîstikvanê herî baş ê filmê zarokan ê sala 2010'an wergirt. Elî Şadman di sala 2009'an de jî di festîvala filman a li Hollanda de wekî lîstikvanê herî baş hatibû xelatkirin. Elî Şadman 14 salî ye û ji sala 2006'an ve bi karê lîstikvaniyê mijûl e. Di çend film û rêzefilman de rol leyîstiye. Fîlmê herî naskirî ku Elî tê de lîstiye, filmê 'Dayik' yê ligel lîstikvana naskirî ya Faris, Golîşfite Ferahanî, ye. Malbata Elî ji Rojhilatê Kurdistanê, ji bajarê Îlamê ye.




1: Reş, 2: Kesk, 3: Kehweyî, 4: Kehweyiyê Zelal




## Fêrî kurdî bibe

B ب
BA
با